

## Li Şamê rûleta rusî!

Şerê ku li Sûriye'yê heta niha ji aliyê hêzên ku ne dewlet in ve dihat meşandin êdî diguhize qonexeke din. Wek tê zanîn ji destpêka şer vir de DYA û Rûsya li herêmê hebûneke giran nedabûn der. Herwiha di rojên dawîn de Rûsya bi hêzeke mezin li Sûriye'yê dest bi êrîşan kir û di serî de DYA, gelek welatan bertek nîşan dan. Şerê ku êdî ji aliyê dewletên sereke ve tê meşandin wek prototîpa şerekî cîhanê tê şîrovekirin.

R04-5

**Bülent Gündüz:**

## Binê keviran tije çîrok in



R16


# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL

Hejmar: 72 05 - 11 Cotmeh 2015 basnews.com






### Hewlêr çaverêya Rojhilata Navîn a nû dike

# Kurd ji şerê mezin re amade ne

Piştî ku Rûsya, Îran û Fransa bi awayeke fermî tevlî şerê Rojhilata Navîn bûn û li Sûriye'yê dest bi tevgera leşkerî kirin, li heremê konjoktureke nû peyda bû. Çav li rê ye ku li dijî DAİŞ'ê operasyonên têkbirinê destpêbike.

Hewlêr beriya 'şerê mezin' yê ku wê li Rojhilata Navîn biqewime, bi pirsgirêkên bihêzkirina aboriya serxbixwe, çareserkirina qeyranên siyasî yên navxweyî, sazkirina yekîtiya siyasî re mijûl e.

R02 - 03

## Keso ke wayîrê dejî yo, hîna rast dinya ra fam keno

R14



R15

## Nûserê jiyana mişext û mirina pêşwext

**Nadire G. Aldatmaz**

R12-13

## Çend dewanê mamekîye...




R10-11

## Rojeva Rojhilat yekîtî ye

Partiya Demokrata Kurdistana Îranê (PDKÎ) û Hizba Demokrata Kurdistanê (HDK) li bajarê Koyê dest bi komcivînan dikin. Herdu partiyan ji bo danûstendinên lihevkirin û yekgirtinan di sersala 2015'an de li hev kom bibûn lê belê negihiştibûn tu encamî. Partiyên siyasî niha dîsa dest bi danûstendinan kiriye û mebesta wan ew e ku bigihêjin rêkeftinekê.

R06

**Özkan Gökcan:**

## DYA ji bo Cerablûsê di dewrê de ye



R08-9

## Dêra Asûriyan hat Kurdistanê

Kurdistan a ku di atmosfera şer de jî bo kêmnetew û olên cuda dibe stargeh dibe navenda Asuriyan. Piştî vebûna Navenda Ola Zerdeştiyê ya li Silêmaniyê bawermendên ola asûrî yên Kurdistanê jî li hev kom bûn. Di komcivînê de hat ragihandin ku Dêra Asuriyan a Rijhilat ku heta niha li DYA'yê bû ji vir pê ve li Kurdistanê ye.

R07

# Hewlêr xwe ji Rojhilata N

Mustafa Turan



Li Rojhilata Navîn, li aliyekî operasyonên leşkerî yên ku Rûsya jî beşdar bû berdewam dikin û geşedanên nû yên li Sûriye'yê hevsengiyên dema şerê sar zindî dikin, li aliyê din jî xuya dibe ku wê ev tevgerîna leşkerî û siyasî hem li Sûriye'yê û hem li Iraq'ê pişta DAIŞ'ê bişkêne. Di vê pêvajoya nû ya ku bi hewla Rûsya'yê destpê kir û hemû dewletên herêmê û yên bi şerê li herêmê re têkildarin hewl didin ku ji xwe re bereyek peyda bikin de bê guman Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) jî bereya xwe dişidîne. Rêveberiya Hewlêrê ku amadekariyên operasyoneke berfireh ku axa Sûriyeyê jî dihundurîne dike, taybet li Kerkûk û Şengalê li dij DAIŞ'ê dest bi tevgerînên leşkerî yên berfireh dike û hêzên xwe amade dike.

RHK'ê, li gel ku ji meha Tebaxê ve bi qeyraneke siyasî re di gulaşê de ye jî, ji ber nêzîkahiya erênî ya Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî ku her diyalogê pêşniyaz dike, hem di şerê li dij DAIŞ'ê de hem jî di warê dîplomasiyê de şiyana xwe bê kêmasî berdewam kir. Ji ber ku di qada şer de RHK'ê tekane hêz bû ku dikaribû DAIŞ'ê paşrev bike jî, di vê pêvajoya nû de xuya ye wê Hewlêr bibe paytexteke navendî ya ku hemû hêzên di vî şerî de xwedî gotinin serdana wê bikin.

RHK'ê ku bi egeriya tûşî neamadeyiya şerê Sûriye yê ku reng guhert bibe re rû bi rû bimîne hebû, ji aliyekî ve di şerê li dij DAIŞ'ê de li Kerkûkê gaveke mezin bihavêje jî, ji aliyê din de hin peywirên wê yên wek; Bihêzkirina aboriya serxbixwe, çareserkirina qeyrana serokatiyê, sazkirina yekîtiya siyasî ku di vê pêvajoya ku 'Dûyem Projeya Mezin a Rojhilata Navin' destpêkiriye de divê bêne bicih anîn li pêş wê ne.

Hewla Rûsya'yê ya nû ku xala makî ya civîna Lijneya Giştî ya Neteweyên Yekbûyî ya li Washingtonê bû, ji aliyekî ve eniya Rûs-Şîa wêrektir dike, ji aliyê din ve li hember vê hewlê tê gotin ku DYA, li gel derîlêvekirina pêvajoya derbazdar a bi Esad, hewl dide ku di navbera RHK'ê û Rêveberiya Rojava ku tekane hêzin ku dikarin li dij DAIŞ'ê rawestin û wê paşrev bikin koordînasyonek operasyonelî saz bike û bi ser van dostên xwe ve pozisyona xwe ya herêmê xurtir bike. Li gel ku dewletên ereb ên wek Siûdî, Qatar û her wiha Îsraîl li hember vê hewla Rûs helwestên xwe diyar nekirine jî, berteka Frensa ya ku yekem car li Sûriyeyê li dij DAIŞ'ê dest bi êrişên asmanî kir û piştî hevdîtina bi Putin re daxuyaniya Serokkomarê tirk Erdoğan ku bi egeriya pêvajoya derbasdar a bi Esed razî bû ji hin geşedanên balkêş in.

Li gel encama hemû ev geşedanên balkêş, babeta herî tê meraqkirin jî helwesta Herêma Kurdistanê ye. Analîzên siyasî vê yekê teqez dikin ku ger Operasyona Mûsilê bê destpêkirin, tevgera leşkerî ya li dij DAIŞ'ê ku li Kerkûkê destpê kirin bêne gelemperkirin û hewlên nêzikhevbûna RHK'ê û Rêveberiya Rojava ku beriya Cejna Qurbanê bi hevkariya DYA'yê destpê kiribûn pêk bên, wê kurd di vê hevsengiya leşkerî û siyasî ya nû de dikaribin destkeftên mezin bi dest bixin.

### Pêvajo bêyî Barzanî nameşe

Di derbarê hewla Rûs, tûşîbûna qeyrana siyasî ya RHK'ê û babetên bi van meseleyan re têkildar de Endamê Cıvata Serkirdayetiya Partiya Demokrat a Kurdistanê(PDK) Alî Teter pirsên BasNûçe'yê bersivand. Teter, anî ziman ku her çiqas mudaxeleya Rûsya'yê wek li dij DAIŞ û komên din ên terorîst xuya bike jî ev yek wê berdewamiya desthilatiya Esad jî bi xwe re bîne û pêwîstî bi vê yekê kir ku ger DYA û hevpeymanên wê di şerê li dij DAIŞ'ê de çalaktir bibin wê dikaribin hevsengiya hêzî ya ku xizmetê li berjewendiyên Rûsya, Îran û Esad dike daxînin asteke asan. Teter vê hişyariyê kir ku ev hevsengî neyê kontrolkirin wê egeriya ku Rojhilata Navîn aloztir bibe peyda bibe. Di derbarê beşdariya Iraqê ya bereya Rûs-Şîa û li Bexdayê avakirina navendeke îstixbaratî ya vê bereyê de jî Teter wiha pê de çû: "Iraq ne dewletek ku wateya dewletbûna hişmendiya mirov bibersivîne. Wek fermî dewlet be jî Iraq ne tuwana ye ku bi serê xwe gundekî xwe jî ji dest DAIŞ'ê rizgar bike; Lewre wek defakto dewletek perçebûyî ye û tenê ji bo ku pêdiviya arastekirina çek û leşker a Îran û Rûsya bi cih bîne ji bereya Rûs-Şîa re hatiye beşdarkirin. Ji bo ku nekeve bin kontrola Îranê DYA heta niha piştegiriya Iraqê dikir, lê piştî vê helwesta wê dibe ku DYA êdî dest ji vê pitegiriyê berde." Li ser helwesta RHK'ê de jî Alî Teter anî ziman ku wê RHK'ê di şerê li Sûriyeyê de nebe alîgirê tu hêzekê û wê gringiya xwe bide rizgarkirina axa Kurdistan ku hê di bin kontrola DAIŞ'ê de ye.

Di derbarê qeyrana serokatiyê ya Herêma Kurdistanê de jî Teter diyar kir ku ji ber destpêkirina şerê DAIŞ'ê, derfet çênebûye ku RHK'ê vê meseleyê di mercên asan de çareser bike û wiha dom kir: "Bi raya min ger ku şer tunebûya wê ev mesele evçend grîft nebûya. Di vê rewşê de ya balkêş ew e ku pêvajoya em tê de ne pêvajoyeke awarte ye. Di vê rewşa awarte de berdewamiya serokatiya kesayetek wek Birêz Mesûd Barzanî ku hem ji alî gelê Kurdistan ve pir tê hezkirin û hem jî bi şarezayiya xwe ya dîplomatît di qada navnetweyî de xwedî grîngiyke mezin e, wê ji bo hemû kurdan sûdwertir be. Jixwe baş diyar e ku ji bilî Birêz Barzanî tu kesayetek ku dikaribe postê serokatiya Herêma Kurdistanê bi cih bîne tune ye. Di pêvajoyeke wiha xeternak de tebitandin an jî kêmkirina desthilatên kesayeta Barzanî ne pêkan e ku ji alî PDK'ê ve bê qebûlkirin.

## Bexda çekên hevpeymanê desteser dike



Rawêjkarê Asayîşa Giştî ya RHK'ê Mesrûr Barzanî ku heftiya çûyî li ser hesabê xwe ya Twitterê gotibû ku nêzîkî 4 mehan e hêzên hevpeyman alîkariya çek a Pêşmerge rawestandine û ev yek jî bûye sedemê gumanan, di hevdîtina li gel Serbalyozê DYA yê li Hewlêrê Matthias Mitman de jî vê mijarê hanî rojevê. Barzanî, Hikûmeta Navendî ya Iraqê ya li hemberî RHK'ê rexne kir û got ku Hikûmeta Navendî berpirsiyariyên xwe yên ku di destûra Iraqê de hatine destnîşankirin bi cih nayîne. Barzanî diyar kir ku ji ber Bexda ji sedî 17 para budceya RHK'ê naşîne û şerê DAIŞ'ê ku bûye sedemê bi milyonan penaber koçî Herêma Kurdistanê bikin Herêma Kurdistanê ketiye bin barekî pir giran û bi dirêj domkirina şer re rewş veguhêziye qeyraneke mezin a aborî. Mesrûr Barzanî got: "Lê belê bi helwestên bisebir û fedakar ên gel û Pêşmergeyan ev pirsgirêk tên berhingarîkirin." Barzanî, qala alikariya çekdarî ya ku bi ser Bexdayê ve ji Hêzên Pêşmerge re tê kirin jî kir got: "Çekên ku ji alî welatên hevpeyman ji bo alîkariyê têne Bexdayê, li Bexdayê têne desteserkirin û kêmek ji wan çekan ji bo Pêşmerge têne şandin. Ev yek di şer de dibe sedemên astengiyan û divê bê çareserkirin. Serbalyozê DYA yê li Hewlêrê Matthias Mitman jî têkoşîna bibandor a Pêşmerge ya li dijî DAIŞ'ê bilind nirxand û got ku ji bo Pêşmerge li dij DAIŞ'ê têkoşîneke mezintir bike, DYA û welatên hevpeyman hewl didin ku alîkariya çekan a ji Hêzên Pêşmerge re zêde bikin û ew ê vê hewldanê bidewamî bidomînin.

# Navîn a nû re amade dike

Ji ber vê yekê, ger ku di civîna 5 qolî de jî çar partiyên din di vê daxwaza xwe di israr bikin wê tu encam ji civîna 9. jî dernekebe; Lewre ev pêvajo bêyî Barzanî nameşe. Ne Birêz Barzanî û ne jî PDK ne meraqdarên serokatiya Barzanî ne û Birêz Barzanî vî postî wek emanetê gelê Kurdistanê dibîne. Ji ber vê yekê kîngê gel emanetê xwe bixwaze, wê ev emanet bi layiqî radestî gel bibe. Lê belê ji ber ku hin derdor dixwazin ku payeya ku gel daye Birêz Barzanî radestî parlamenan bikin jî, wê niştimanperwer di vê pêvajoya xeternak de RHK'ê li ber bayê bernedin."

**'Divê qeyrana serokatiyê tafîlê bê çareserkirin'**

Piştî ku Iraq'a ku şia lê desthilatdar in jî ji dest DYA'yê derket û beşdarî bereya Rûs-Şîa bû, tê şîrovekirin ku wê DYA dest bi hewldaneke nû bike û di vê bareyê de ji ber ku li qadê tekane hêza ku bi destê DYA'yê digire RHK'ê ye, ev yek li gel RHK'ê destê Rêveberiya Rojava jî xurtir dike.

Ji daxuyaniya Berdevkê Wezareta Pêşmerge ya RHK'ê Cabar Yawer ku got; "Wê Pêşmerge beşdarî bereya Rûs-Şîa nebe" jî xuya dibe ku wê RHK'ê hevkariya stratejîk ya li gel DYA'yê berdewam bike û di hewldaneke ku wê DYA li dij vê hewla Rûsya de bide destpêkirin de wê RHK'ê roleke çalak hilgire. Tê gotin ku di vê hemgameyê de ji bo RHK'ê tekane rêya sûdwer ew e ku bi Rêveberiya Rojava re di serî de pirsgirêka şandina Pêşmergeyên Roj a ji bo Rojava, hemû pirsgirêkên din çareser bike, bi Rêveberiya Rojava re stratejiyeke hevbeş bimeşîne û qeyrana serokatiyê ya ku nêzîkî dû mehan e li dar e çareser bike.

**Goran: Divê Başûr û Rojava stratejiyeke hevbeş pêk bînin**

Berpirsê Têkiliyên Siyasî yê Tevgera Goran Dr. Mihemed Hecî jî di de derbarê qeyrana serokatiyê ya Herêma Kurdistanê û hevsengiya hêzdarî ya nû ya ku piştî hewla Rûsya'yê peyda bû û bandora wan a li ser RHK'ê de pirên BasNûçe'yê bersivand û destnîşan kir ku di vê pêvajoya ku peymana Sykes-Picot a ku sed sal berê nexşeya Rojhilata Navîn xêz kir betal bûye û sînor ji nû ve têne xêzkirin de berdewamiya qeyrana serokatiyê nayê qebûlkirin, bi çi awayî dibe bila bibe divê aliyên siyasî yên Başûr vê qeyrana çêkirî çareser bikin, awirên xwe li ser vê pêvajoya nû tûj bikin û RHK'ê û Rêveberiya Rojava jî di çarçoveya yekîtiya neteweyî de stratejiyeke hevbeş bimeşînin. Hecî anî ziman ku rewşa nû kurdan bêçar dike ku yekîtiya xwe xurt bikin û got: "Hêzên der hewl didin ku bi ser qeyrana serokatiyê berê PDK û YNK'ya ku hêzên leşkerî yên Başûr di des xwe de digirin bidin hev. Ji ber ku ji bo ev qeyran nebûye sedemê pevçûnan aliyên siyasî hestiyar tevgeriyan, mirov dikare ve yekê wek serkeftinê binirxîne lê belê ev têr nake. Dr. Mihemed Hecî wiha dom kir: "Ji bo çareserkirina vê qeyranê berpirsyariya mezin li ser milên PDK'ê ye. Wek dîrokî û rojane PDK, hêza herî mezin a Başûrê Kurdistanê ye. Lê axir divê ji dû pêşniyazên 4 partiyên din ên 'Ya serokekî ku bi heman desthilatan lê ji alî parlamentê ve bê hilbijartin yan jî serkeki ku kêm desthilatan lê ji alî gel ve bê hilbiartin' yekî hilbijêre û vê qeyranê bi encam bike."

**Egera serdana Rojava ya Barzanî û geşedanên beriya wê**

Di 15'ê Îlonê de Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî û Hevserokê PYD'ê Salih Muslim li Hewlêrê hatibûn cem hev û dû re şandeya ku ji Cîgirê Rawêjkarê Wezareta Derve ya DYA Brett McGurk, Balyozê DYA yê li Bexdayê Stuart Jones, Fermandarê Hêzên Taybet ên DYA James Terry û Fermandarê Hêzên DYA yên li Iraqê Tony Thomas pêk dihat beşdarî vê civînê bûbûn. Çavdêrên siyasî didin zanîn ku di vê civînê de gelek mijarên wekî xurtkirina koordînasyona hêzên hevpeyman, Hêzên Rojava û Hêzên Pêşmerge ku li bejahiyê li dij DAIŞ'ê têkoşîna herî bi bandor dikin, ji nû ve zindîkirina Peymana Duhokê ku bi rawestiyabû û derbasbûna Pêşmergeyên Roj'ê ya Rojavayê Kurdistanê hatine nîqaşkirin. Piştî civînê rayedarên Rojava dane zanîn ku YPG'ê ji bo êrîşî Cereblûs û Reqqayê bike dest bi amadekariyan kiriye û li hemberî Cereblûsê dest bi êrîşên topan kiriye.

Dîsa operasyona rizgarkirina Mûsilê kete rojevê û amadekariyên wê dest pê kirin. Ev geşedan diyar dikin ku di civînê de pir babet hatine nîqaşkirin. Li gor hin çavdêran jî wê di navbera DYA, RHK'ê û Rêveberiya Rojava de navendeke operasyonê ya hevbeş bê sazkirin û wê hin yekeyên Peşmerge li gel çekên giran derbasî Rojava bibin û wê li hin cihên diyarbûyî bên bicihkirin. Di nûçeyên bi vî rengî yên di çapemeniyê de derketine de li ser Pêşmergeyên ku wê derbasî Rojava bibin nezelaliyek heye. Lê belê Berdevkê Wezareta Pêşmerge ya RHK'ê Helgurt Hîkmet, bi daxuyaniyek çapemeniyê vê nediyariyê zelal kir û got ku Pêşmergeyên ku derbasbûna wan a Rojava tê şêwirandin Pêşmergeyên Roj'ê ne.

Çavdêr her wiha destnîşan dikin ev civîna ku Hevserokê PYD'ê Salih Muslim li Hewlêrê bi Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî û rayedarên DYA'yê re pêk aniy bi serkeftî derbas bûye, di civînê de lihevkirineke siyasî bi RHK'ê re pêk hatiye û RHK'ê, Rêveberiya Rojava û DYA ji bo têkbirina DAIŞ'ê dikarin tifaqeke xurttir û çalaktir li dar bixin. Piştî civînê Cîgirê Wezîrê Derve yê DYA Bertt McGurk jî li ser Twitter'a xwe got ku bi tevlîbûna Barzanî û Muslîm wan civîneke girîng li dar xistine. Salih Muslîm jî di daxuyaniyeke din a çapemeniyê de got ku dibe ku Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî serdana Qamişloyê bike. Hemû ev geşedan diyar dikin ku di vê civînê de biryarinên girîng hatine stendin.

**Dîplomasî berdewam e**

Di pêvajoya ku li Rojhilata Navîn hîmê hevsengiyên nû tê avêtin de Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî ku cejna xwe ya çûyî li eniya Xazirê bi Pêşmergeyan re derbas kiribû, di nav heftiyê de gelek hevdîtin pêk anîn. Barzanî li ofîsa serokatiyê Nûnerê Taybet ê Wezareta Bergiriyê ya Îngilîstanê General Tom Beckett û şandeya li gel wî qebûl kir. Di hevdîtina ku rola Pêşmerge ya têkoşîna li dij DAIŞ'ê û hevkariya di nav hevpeymana navneteweyî û Pêşmergeyan de hate gotûbêjkirin de Serokê RHK'ê Barzanî pêdiviya muhîmmata leşkerî ya Pêşmergeyan anî ziman. Beckett jî destnîşan kir ku peymana stratejîk a di navbera RHK'ê û hevpeymana navneteweyî ya ji bo şerê li dijî DAIŞ'ê de serkeftinê pêkan kirî ye. Piştî vê hevdîtina ku têkiliyên navbera Hewlêr û Bexdayê jî hatin nîqaşkirin, Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî Wezîrê Neftê yê Iraqê Adil Abdulmehdî jî qebûl kir. Di vê hevdîtina ku geşedanên siyasî, leşkerî û aborî yên li Iraq û RHK'ê hatin nirxandin de rewşa Ramadî û herêmên ku li dij DAIŞ'ê şer berdewam dikin jî hatin nîqaşkirin.

Li aliyê din, Mesûd Barzanî, li Dêra Asûrî ya li Enkawa'yê çû serdana Metran Mar Gorgîs'ê ku wek Partîkê Dêrên Asûrî hatibû hilbijartin û bi vê hilbijartinê re piştî 82 salan navenda asûriyan ji DYA'yê hatibû Kurdistanê. Di serlêdanê de Barzanî anî ziman ku asûriyên ji bo azadiya Kurdistanê canê xwe feda kirine li cem wan cihê rûmetê ye û got ku Kurdistan welatê asûriyan e jî. Di vê serdanê de Metran Mar Gorgîs jî bextewariya xwe ya ji bo serdana Mesûd Barzanî anî ziman û got ku ew jî Kurdistanê wek welatê xwe dibînin.

**'Wêneyê Alan, sembola mazlûmiya kurdan e'**

Mesûd Barzanî'yê ku di nav hevdîtinên dîplomatîk de bi Abdula Kurdî'yê bavê Alan Kurdî yê ku dema dikir derbasî Ewropayê bibe, li Deryaya Egeyê piştî bota ku lê siwar bûbûn noqî avê bû û laşê wî li kersaxê avê ketibû û bi wêneyê laşê li kersaxê avê ketibû rojeva hemû cîhanê hevdîtinek pêk anî û got ku Alan, sembola mezlûmiya kurdên îroyîn e. Barzanî, xemgîniya xwe ya ji ber bûyera ku qewimî anî ziman û ji ber bi encama noqîbûna botê, digel Alan hevjîn û 2 zarokên xwe winda kirine ji Abdula Kurdî re sersaxî xwest. Barzanî kirpand ku buyera ku hatiye serê malbata Kurdî, dikare were serê hemû kurdan û ji ber vê yekê wêneya Alan, sembola mezlûmiya kurdan e û ji bavê Alan re got ku deriyên Herêma Kurdistanê ji wî re vekirî ne. Piştî ku Abdula Kurdî derbarê bûyerê de ji Serokê RHK'yê Mesûd Barzanî re agahî dan Serok Barzanî got ku ji ber ku Hikûmeta Herêma Kurdistanê û gelê wê mijûliyeke baş nîşan dane rûmetyar bûye û ji bo vê jî sipasiyên xwe pêşkêş kirin.

## Operasyona Kerkûkê bi serkeftî bi dawî bû

Operasyonên berfireh ên Pêşmergeyan bi tevlîbûna Pêşmergeyên Partiya Azadiya Kurdistanê (PAK) ku bi armanca paqijkirina cih û warên başûr û rojavayê Kerkûkê ji DAIŞ'ê heftiya çûyî hatibû destpêkirin bi serkeftî bi dawî bûn. Dan zanîn ku di operasyona bi armanca paqijkirina Girê Xereyê ku ji bo ewlehiya herêmê xwediyê girîngiyeke stratejîk e û gundên herêmê ji DAIŞ'ê de ji 100'î zêdetir DAIŞ'î hatine kuştin. Di operasyona ku 15 Pêşmerge jî jiyana xwe ji dest dan de nîqaşa netêrbûna bergiriyên ji bo tepikan destpê kir lewre di operasyonê de 14 Pêşmerge bi encama teqînên tepikan jiyana xwe ji dest dabûn. Dan zanîn ku Gurbiye, Telwerd, Xere, Kiwarsiya Ereb, Kiwarsiya Kurd, Mihemed Xelîd, Seyîd Xelef jî tê de ji dehan zêdetir gund ji destê DAIŞ'ê hatine rizgarkirin û li ser Kerkûkê gefa DAIŞ'ê nemaye. Gerînenedeyê Polîsan ê Kerkûkê Serheng Serhed Qadir agahî dan BasNûçeyê û got ku Pêşmergeyan operasyonên serkeftî pêk anîn û hemû cih û warên ku kontrola wan kiribû armanc bii dest xistin. Qadir da zanîn ku di operasyonan de bi sedan endamên DAIŞ'ê hatine kuştin û ji ber ku li ser endamên DAIŞ'ê nasnameya wan tune bû nasnameyên wan nehatine diyarkirin lê di nav wan kesên hatine kuştin de fermandar jî hene. Serheng Serhed Qadir got ku di encama operasyonên ku hêzên hewayî yên Hevpeymanê jî alîkarî didan de welehiya Kerkûkê û derûdorên wê hatiye pêkanîn û ji bo kirariyên paqijîna tepikan tîmên pispor hatine peywirdarkirin.







# Li Şamê rûleta rusî!

**Mehmet Salih Batırhan**

Rûdan û geşedanên mafên mirovan ên di sala 2010'an de li Rojhilata Navîn dest pê kirin û bi navê "Bihara Ereban " hat binavkirin di destpêkê de tesîr li herêmê û bi dû re li hemû cihanê kir. Bûyerên ku weke kevirên domînoyê li Tûnûsê dest pê kir û dû re li Misir, Lîbya, Iraq, Sûriyê, Yemenê û Bahreynê belav bû. Rûdan, çalakî û bbuyerên li van welatan derketin di kurtedemekê de li hemû Rojhilata Navîn û dû re li hemû cihanê belavbûn. Bi taybetî, şerê zêdetirî 4 salaye li Sûriye'yê heye bû qada şerê hêzên cihanê û wan welatan hêza xwe nîşanî hevdû dan. Ji bilî koalîsyona navdewletî ya ku DYA'yê serkeşiyê wê dike Îran û Rûsya'yê jî li Sûriye'yê dest bi beşdariya şer kirin. Beşdariya Rûsya û Îranê bû cihê şîrove û gelek nîqaşan û beşdariya wan herdû hêzên weke mînora Şerê Cihanê yê 3'mîn hat şîrovekirin.

Her wiha Rûsya'yê komên nêzîkî DYA'yê yên li Sûriye'yê ji xwe re kir armanc û ev yek jî dide zanîn ku ew ê herdu hêzên mezin ê cihanê li Sûriyê êdî hevalbendên hev bikin armanc û ew  ê di qada şer de bi ser hev de bigrin. Her wiha em dikarin tekez bikin ku Washington û Moskowaya li Sûriye'yê alîkariya çek û teqemenî didan hevalbendên xwe ew êdî di şûna hevalbendên xwe de beşdarî şer bibin. Her wiha êrîşên Rûsya'yê yên ser Artêşa Azad û El Nûsraya ji aliyê DYA'yê ve tê piştevanîkirin û bordûmana li ser Hûmûs, Talbisê û Îdlîba nêzîkî bajarê Lazkiyê ya Beşar Esad jî da xuyakirin ku aloziya Sûriye'yê bûye textê kişikê û yarîzanê wê gelek in. Li hêla din hefteyeke borî rêxistinên îstîhbaratê yê Rûsya, Îran, Iraq û Sûriye'yê li Baxdayê li hev kom bûn û di wê civînê de Rûsyayê tekez kirye ku ew ê li hember bloka Tirkiyê, Siûdî Erebîstan û Qetera Sunnî ya DYA'yê piştevaniya wê dike raweste û ew ê piştevaniya bloka Şîe ya Îran, Iraq û Sûriye'yê bike. Her wiha van geşedanan da îspatkirin ku Rûsya hîn jî li herêmê weke hêzêke sereke ye û ew ê jî di dizayna nû ya Rojhilata Navîn de rola xwe bilîze.

Li hêla din çavê raya giştî ya cihanê jî li Civîna Giştî ya Neteweyên Yekgirtî ya li New York'ê  bû.  Tehlîlger û şîrovekarên siyasî yên li ser Civînên Giştî yên NY'yê jî rawestiyan amaje bi wê yekê kirin gotin; "Aktorên siyasî yên Rojhilata Navîn guherîne" her wiha şîroveker û tehlîlgeran div ê amajeyê de Îran û Rûsya weke aktorên nû yên Rojhilata Navîn dest nişan kirin. Li hêla din giregirên dewletan li New Yorkê peyam û stratejiyên xwe ji hevalbendên xwe û ji raya giştî kirin di wê civinê jî de Tirkiye ji hêla Ahmet Davutoğlu hat temsil kirin. Serokwezîrê Tirkiye'yê beşdarî civinên duqolî yên aktorên giring nebû. Her wiha ev yek jî dide zanîn ku ew ê Tirkiye di serdema nû ya ku li Sûriye'yê destpêkiriye de helwesteke lawaz nişan bide.

Di gel van rûdanan giregirên welatên ê beşdarî Civîna Giştî ya NY bibûn şerê kurdan ê Başûr û Rojavayê Kurdistanê li hember DAIŞ'ê didin bilind nirxandin. Her wiha ji hêla koalisyona navdewletî û ji hêla rayedarên Rûsya'yê piştevaniya kurdan a li hember DAIŞ' ê dîsa hat dûpatkirin. Li hêla din Pêşmergeyên Rojavayê Kurdistanê jî ji bo derbasbûna Rojava amadekariyan dikin û li benda fermana Serokê Herêma Kurdistanê ne. Her wiha hat zanîn ku hêzên kurd ê li Rojava jî amadekariyên operasyona Cerablûsê dikin û ew ê di demek kurt de dest bi rizgarkirina wê herêmê jî bikin.

## Rûsya hevalbendên DYA'yê bombardûman dike

Li ser vexwendina rejima Sûriye'yê firokeyên şer ê Rûsya'yê di 30'ê îlonê de derdora Îdlîb, Lazkiyê, Hama û Helebê da ber bombeyan. Her wiha hat zanîn ku di encama bordumanê di 50 beregehên komên radîkal ên îslamî ji holê hatine rakirin. Her wiha hat zanîn ku ew baregah ê komên nêzîkî DYA'yê û Tirkiye'yê ne û ew ji hêla van herdu hêzên ve tên piştevanîkirin. Piştî bordûmanê Navenda Çavdêriya Mafê Mirovan a Sûriye'yê jî daxuyand ku di encama bordûmana Reqqayê de 12 çekdarên DAIŞ'ê hatine kuştin.

## Danezan li hember Rûsya'yê

Welatên ku DYA'yê sêrkêşiya wan dike, welatên Ewrûpayê li hember êrîşên Rûsya'yê rawestiyan û nerazîbûn nişan dan. Her wiha van welatan danezanek belav kirin. Welatên ku div ê danezana li hember Rûsya'yê de cihê xwe girtin; Tirkiye, DYA'yê, Almanya, Îngiltere, Fransa, Qetar Siûdî Erabîstan bang li Rûsya'yê kirin û ji Rûsya'yê xwestin dev ji bordûmana "opozîsyonê" û sivîlan berde û DAIŞ'ê ji xwe re bike armanc. Her wiha di danezanê de hat eşkere kirin ku ji ber metirsiya hedefgirina sivîlan gûman li ser bordûmanan heye.

## Moskowa: Me li DAIŞ'ê da ne li sivîlan

Wezirê Derve yê Rûsya'yê Sergey Lavrov angaştên ku firokeyên Rûsya'yê li sivîlan daye derewand û da zabîn ku bila DYA'yê serçaviyên mirina sivîlan eşkere bike.Piştî konferansa rojnemevanî ya li NY Sergey Lavrov û John Kerry pirsên rojnamegeran

bersivandin. Lavrov li ser angaştên bordûmana sivîlan rawestiya û daxuyand ku bila serçaviyan ji raya giştî ya cihanê re eşkere bikin.Her wiha Lavrov amaje bi wê yekê kir di gel kordînasyonê Artêşa Sûriye'yê wan li DAŞ'ê daye û wan baregehên wê rêxistinê ji xwe re kiriye armanc. Her wiha Lavrov daxuyand ku heta niha di derbarê bordûmana navendên xelkê sivîl tu agahî ji wan re ne hatine.

**Rûsya ew ê leşkeran bişîne**

Di gel van rûdanan Parlamentoya Rûsya'yê û Konseya Federasyonê şandina leşkeran a ji bo Sûriye'yê pesend kir. Piştî civîna bi Serokê DYA'yê Obama re Seokê Rûsya'yê Pûtîn bang li Konseya Ewlekariyê kir û daxwaza civîneke derasayî kir. Serokwezîrê Rûsya'yê Dîmîtrî Medvedev, Serokê Dûmayê Sergey Narişkîn, Serokê Federasyonê Valentîna Matviyenko, Sekreterê Konseya Ewlekariyê Nikolay Patruşev,Kordînatorê Ewlekariyê yê Federal Aleksandr Bortnîkov, Serokê Rêveberiya Îdarî ya Kremlînê Sergey Îvanov, Wezîr Navxweyî Vladîmîr Kolokoltsev, Wezîrê Berevaniyê Sergey Şoygu Serokê Îstîhbarata Derve Mihail Fradkov beşdarî civînê bûn. Konseyê tezkereya çûna leşkeran a ji bo derveyî welêt pesend kir.

**"Mixalîf" li Stenbolê civiyan**

Li Sûriye'yê û li Civîna Giştî ya NY ev geşedan pêk hatin. Komên ku Tirkiye'yê pişteavniya wan dikir ê weke Ahrar El Şam, Ceyş El Îslam, Sukur El Şam, Ceyş El Mûcahîdîn, Yekîneyên Sûltan Mûrad û Artêşa Azad bi nepenî li Stenbolê li hev kom bûn. Civîna muhalîfên çekdar ê Sûriye'yê du rojan berdewam kir û di civînê de geşedanên dawî û plana Staffan de Mistura hat rojeva muhalîfan. Li gor plan Nûnerê NY yê Sûriye'yê Staffan de Mistura ew ê lijneyeke ku ji muhalif û dezegehên ivil pêk tê bê avakirin. Û ew ê ev lijne kare birêvebirin û leşkeri yê Sûriye'yê kontrol bike. Her wiha li gor vê planê ew ê Beşar Esad jî li ser erka xwe ya Serokkomariyê bimîne.

**"Rûsya ji berê bi hêztir e"**

Pisporê Rojhilata Navînê navenda Bilgesam'ê Ali Semin li ser geşedanên dawî yên Rojhilata Navîn û Sûriye'yê sekini û ji BasNûçeyê re axivî. Semin eşkere kir ku rageşiya di navbera Rûsya û DYA'yê de dişibe ya sedsala 20'an û "Ereba Biharan" jî tesîreke mezin li Rojhilata Navîn kiriye. Her wiha Semin bal kişand ser polîtîkayên Rûsya'yê yên dawî jî û wiha berdewam kir: " Rûsya li vir bi tenê parastina Esad nake. Hewl dide blokeke weke Sovyetê ava bike û hêza xwe zêdetir bike. Ev yek tekez e ku Rûsya ji berê bi gelekî bihêztir e. DYA'yê weke berê ne leşkerê herêmê ye. Li hember wê Çîn û Rûsya heye."

**"Sûriye deriya Rûsya yê Deryaspî ye"**

Pisporê Rojhilata Navîn Dr. Mustafa Peköz jî li ser geşedanên dawî rawestiya û eşkere kir ku Rûsya û Îran bûnê hêzên nû yên herêmê û xala rojeva NY jî qeyrana Sûriye'yê bûye. Her wiha Peköz bal kişand ser polîtîkaya Rûsya'yê ya ser Sûriye'yê jî û ragihand ku Sûriye deriyê Rûsya'yê yê



Deryaspi ye û Rûsya dev ji Sûriye'yê bernade. Di berdewamiya axaftina xwe de Peköz tekez kir ku Rûsya dixwaze hêza xwe nîşanî cihanê bide û wê yekê jî li Sûriye'yê dike.

**Mûslîm: Rûsya wê Tirkkiye'yê asteng bike**

Digel ku ev tişt li Suriye'yê diqewimin Hevserokê PYD Salih Mislim diyar kir ku Rûsya nahêle ku tirkiye êrişî Sûriyeyê bike. Salih Mislim amaje pê kir ku polîtîkaya Tirkiyeyê ya sûriyeyê top avêtiye û Tirkiye wan weke dijmin dibîne. Mislim dibêje, "Eger ku Tirkiye helwesta xwe ya li hember me nermtir bike em amade ne ku bi wan re biaxivin."Herwiha Mislim derbarê axaftinên Serokkomarê Tirkiyeyê Recep Tayîp Erdogan û Serokwezîrê Ahmed Dawûtoglû yên derheqê YPG û PYD'ê de jî axivî û got, "Rayedarên Tirk her tim PYD û YPGê bi terorîstiyê sûcdar dikin. Me çi terorîstî kiriye?". herwiha Mislim amaje bi "derbasbûn digel Esad" re jî kir û got, "Rûsya ji serî ve digel Esad bû. Lê belê em û Rûsyayê derbarê mayîna Esad de ne di heman fikrê de ne. Esad êdî nikare ku weke xwe ya berê bimîne. Ew dikare ji bo demeke demkî û heyamake derbasok û diyaloga alîyan bimîne. lê belê di demdirêjiyê de pêkan naxûyê ku piraniya gelê sûriyeyê Esad qebûl bike.

**"Dê Pêşmergeyên Roj li dijî DAIŞ'ê şer bikin"**

Berdevkê wezareta pêşmergeyan a hikûmeta herêma kurdistanê Helgurt Hikmet jî got di çarçoveya lihevkirina PYD û serokê herêma kurdistanê Mesûd Barzanî de dê pêşmergeyên rojava biçin herêmê. Hikmet diyar kir ku rola YDA'yê jî di vê lihevkirinê de heye. Berdevkê Wezareta Pêşmergeyên Herêma Kurdistanê diyar kir ku pêşmergeyên ku dê vegerin Rojava ji çend yekîneyan pêk tên û got, " Ev hêzana saleke berê jî amade bûn ku biçin Rojava. Lê belê ji ber nakokiyên di navbera partiyên rojava de ev yeka pêk nehat. Eger ku ew di vê rewşê de biçin Rojava ew ê bandoreke erênî li wî şerî bikin."

**"Divê Pêşmergeyên Rojava vegerin"**

Endamê Dîvana Serokatiya PDK'ê Elî Teter jî derbarê vegera welatên xwe ya pêşmergeyên rojava de axivî û çûyîna pêşmergeyan a kobanê weke mînak da. Herwiha Teter diyar kir ku digel hebûna vê mînakê niha pêşmergeyên ji herêmê nikarin biçin wê herêmê. Teter amaje pê kir ku ti sedemên rewşeke wiha nayê têgihiştin. Teter derbarê daxûyaniya rayedarên PYDê yên weke "Yan ew ê bên di bin banê YPGê de şer bikin yan jî li Rojava ji bo ti hêzên din ên çekdar ti destûr nayên dayîn" jî axivî û diyar kir ku digel ku li Rojava ti hewlên dewletbûnê nîn in bi awayekî kordîne her hêza leşkerî dikare bi hev re bixebite. Teter îda kir ku YPG bi xwe ji baskê leşkerî yê PYDê ye û got, "Bereveajî, eger ku hêzeke siyasî bixwaze tevahiya hêzên siyasî di bin baskê wê yê leşkerî de kom bibin ev tiştekî totalîter e û ew ê rê li pêşberî kêşeyên mezintir deriyan veke." Teter derbarê serkeftina pêşmergeyên rojava de jî axivî û got, "Eger ku li Rojava ewlehî bi awayekî rêkûpêk bê avakirin û hilbijartineke azad bê lidarxistin pêkan e ku tevahiya hêzên leşkerî di bin banekê de kom bibin. lê belê di vê rewşê de ku pêşmergeyên rojava li başûrê kurdistanê di çeperan de şerê DAIŞ'ê dikin, têkevin bin banê partiyeke siyasî ev nabe daxwazeke adilane."

**"PYD dê li Moskowa'yê nûnertiyê veke"**

Berdevkê têkiliyên der ve yê Kantona Kobanê îbrahîm kurdo jî ji basnûçeyê re piştrast kir ku dê PYD li Moskowê nûnertiyê veke. Herwiha Kurdo diyar kir ku PYD li rojhilata navîn aktorekî giring e û diyar kir ku xebatên PYDê yên dîplomasiyê di asteke bilind de ne. Kurdo got, "Nûçeya ku dê PYD li Moskowê nûnertiyê veke, rast e. Rêveberiya Rojava li başûrê kurdistanê, ango li bajarê Silêmaniyê jî nûnertî vekir. Em him nûnertiyên li başûrê kurdistanê, him yên li Emerîka, li Ewropa û yên li Moskowê giring dibînin.Di berdewamiya axaftina xwe de Kurdo li ser rêkeftina PYD'ê û Rêveberiya Herêma Kurdistanê ya ji bo derbasbûna Pêşmergeyên Kurdistanê jî rawestiya û daxuyand ku eger kurd di warê leşkerî û siyasî de yekgirtinekê saz bikin ew ê tu hêz nikaribin li hember kurdan rawestin. Her wiha Kurdo wiha berdewam kir: "Ji bo parastina kurdan hewcedarî bu yekitiya kurdan heye. Di 3 salê li hember DAIŞ'ê de me serkeftinên mezin bidest xistin. Hatina Pêşmergeyan a ji bo Rojava dê di warê berxwedanê de me behtir bi hêz bike."







# Rojeva Rojhilat yekîtî ye



Pêşmergeyên herdu partiyên siyasî yên zêdetirî 25 sala ye dev ji çalakiyên çekdarî berdabûn dîsa dest bi çalakiyên çekdarî dikin. Her wiha Pêşmergeyên her du partiyan derbasî Rojhilatê Kurdistanê dibin û êrîşê dibin ser pasdar û besîcên Komara Îslamî ya Îranê.

Elî Çemşîd

Hevgirtin û yekgirtina hêzen kurd ya ku li Başûr û Rojavayê Kurdistanê li hember DAIŞ'ê didome arîşeyên di navbera partiyên kurdan de jî nerm dike û wan nêzîkî hev dike. Partiyên Rojhilatê Kurdistanê yên ji ber hin boçûnên cûda ji hev qetiyabûn li ser yekîtî û hevgertinê destbi komcivînan dikin. Partiya Demokrata Kurdistana Îranê (PDKÎ) û Hizba Demokrata Kurdistanê (HDK) li bajarê Koyê dest bi komcivînan dikin. Herdu partiyan ji bo danûstendinên lihevkirin û yekgirtinan di sersala 2015'an de li hev kom bibûn lê belê negihiştibûn tu encamî. Partiyên siyasî niha dîsa dest bi danûstendinan kiriye û mebesta wan ew e ku bigihêjin rêkeftinekê. Endamên Polîtbûroya siyasî yên herdu partiyên amaje bi wê yekê dikin ku daxwaza xelkê Kurdistanê yekgirtina herdû partiya ye û ew jî bo wê yekê ketine nava hewldanan.

Li hêla din zext û fişara Îranê ya li ser kurdên Rojhilatê berdewam dike. Dewleta Îranê li ser sînorê Rojhilat û Başûrê Kurdistanê gelek beregehên leşkeri danîn û gelek bajarên Rojhilatê mîlîtarîze kir. Her wiha çalakiyên Pêşmergeyên PDKÎ û HDK'ê jî berdewam dikin. Pêşmergeyên herdu partiyên siyasî yên zêdetirî 25 sala ye dev ji çalakiyên çekdarî berdabûn dîsa dest bi xebatên çekdarî dikin. Her wiha Pêşmergeyên her du partiyan derbasî Rojhilatê Kurdistanê dibin û êrîşê dibin ser Pasdar û Besîcên Îranê. Bi vê mebestê çend sixûr û Besîc hatin kuştin. Herî dawî çend kesên ku madeyên hoşber li nava ciwanên Rojhilat belav dikin jî hatin cezakirin. Li hêla din li nêzîkî Pîranşarê jî 2 Pêşmergeyên PDKÎ'yê jî di encama teqîna mînekê de birînadar bûn.

### Mewlûdî: Wê herdû partî bibin yek

Piştî heşt 10 mehan herdu partî dîsa ji bo lihevkirin û yekgirtinê li hev kom bûn. Di 28'ê mehê de danûstandin û giftûgoya di navbera herdu aliyên Hizba Demokrata Kurdistan û Hizba Demokrata Kurdistanê Îranê de bi armanca yekgirtinê dîsa dest pê kirin. Derbarê hevdîtinan de Cîgirê Sekreterê HDK'ê Mistefa Mewlûdî bo BasNews'ê axivî û diyar kir ku herdu partî jî naçarê hevgirtinê ne û bi awayek cidî jî vê pêwistiyê dibînin bo vê kar dikin. Mewlûdî daxuyand ku di civîna partiya wan a dawî de hemû endamên mekteba siyasî di bin sekreteriya Mistefa Hicrî de kom bûne û gehiştine wê biyarê ku herdu partî d bin navê Hizba Demokrata Kurdistanê Îran de bibin yek.

### "Yekîtî daxwaza gelê kurd e"

Cîgirê Sekreterê HDK'ê herwiha diyar kir ku hevdîtinên wan ên ligel HDK-Î berdewam in, niha ji bo baştirkirina pêwendiyan kar dikin û dê pêşniyarên hevgirtinê yên partiyan jî di civînên din de jî bêne gotûbêjkirin, xalên teknîkî û mekanîzmaya yekxistina rêxistinan bêne avakirin. Mewlûdî diyar kir ku dê di vê hevgirtinê de hemû mafê endamên partiyan li ber çav bê girtin, ezmûnên dîrokê sûd werbigrin, beşdariya hemû aliyan esas bigrin, siyasetek rast bişopînin û ev jî wê bi rêkeftinek nivîskî bêkirin ku hemû kes pabend be. Mewlûdî her wiha got: "Daxwaza gelê kurd li Rojhilatê Kurdistanê hevgirtina herdu partiyane û ev jî bo wan rêya raste. Herwiha di vê dema derbasbûyî de Pêşmergeyên herdu aliyan jî gelek alîkarî dane hev û ev yek jî bo wan dibe peyamek.

### "Xelk çavêreyî yekîtiyê ye"



Kerîm Perwîzî yê Endamê Polîtbûroya PDKÎ jî di derbarê danûstendinên di navbera wan û HDK'ê de berdewam dikin de agahî da BasNûçe'yê. Perwîzî anî ziman ku wan du sal berê di kongreya partiya xwe de biryar stendibûn ku ew ê arîşeyên di navbera xwe û HDK'ê de heyî çareser bikin û HDK'ê dîsa vehewînin nav PDKÎ'yê. Her wiha Perwîzî li ser wê yekê jî rawestiya û da zanîn ku ew ê danûstendinên wan ê bi HDK'ê re berdewam bikin. Perwîzî balê kişand ser wê yekê ku xelkê Rojhilatê Kurdistanê dixwaze êdî partiyên Rojhilat yên binemala PDKÎ'yê lihev kom bibin û herdu partî yekgirtinê di navbera xwe de saz bikin. Perwîzî li ser rûdanên dawî yên li Rojhilatê Kurdistanê jî rawestiya û eşkere kir ku hewcedarî bi wê yekê heye ku partiyên siyasî helwesteke yegirtî nîşan bidin û li ser wê helwestê polîtîkayên xwe saz bikin. Li hêla din Kerîm Perwîzî li ser prsoseya danûstendina herdu partiyan jî rawestiya û wiha berdewam kir: "Gelê me dostên me hemû ji van danûstendinan kêfxweş in û hemû çavêreyî yekîtiyê ne."

### Tevgerên Îranê yên li ser sînorê Başûr û Rojhilat

Li hêla din Îranê li ser sînorê Başûr û Rojhilatê Kurdistanê bi dehan baregeh û çeperên nû yên leşkerî ava kirine û li hinek cihan jî derbasî nav Başûrê Kurdistanê bûye! Îranê di heyama çend mehên borî de hêzek mezin li ser sînorê Başûr û Rojhilat kom kiriye û gellek baregeh û çeperên leşkerî ava kirine.Welatî û gundiyên devera Raniya ya Başûrê Kurdistanê jî vê yekê acizin û didin zanîn ku di navbera wan û pasdarên Îranê de bi tenê 1 kîlometre maye. Her wiha li ser sînorê navbera Rojhilat û Başûrê Kurdistanê 2 Pêşmergeyên PDKÎ'yê beriya bi du rojan birîndar bûn. Li gor zanyariyên hatine bi destxistin Pêşmergeyên Partiya Demokrata Kurdistana Îranê (PDKÎ) ji bo pêwendîkirin bi xelkê re û bo encamdana çalakiyên propagandayî, li aliyê navçeya Pîranşarê (Xanê) derbasî nav xaka Rojhilat bibûn.

Li aliyê din, ew pêşmergeyên PDKÎ'yê dema ku dawî bi çalakiyên xwe li aliyê Rojhilatê Kurdistanê anîn û xwastin vegerin bo beregehên xwe li ser sînorê navbera Rojhilat û Başûrê Kurdistanê mîneke (mayîn) vedayî li ser rêya wan teqiya. Li gor agahiyan, mîn li çiyayê Sîxê Derê li sînorê navçeya Pîranşarê li ser rêya Pêşmergeyên PDKÎ'yê teqiya ye û di encamê de 2 Pêşmerge birîndar bûne. Her wiha hat eşkere kirin ku her 2 Pêşmergeyên birîndar ên PDKÎ hatine veguhastin bo nexweşxaneya hawarhatinê ya li bajarê Hewlêrê û dest bi dermankirina wan hatiye kirin. Li gor agahiyên dawî hat gotin ku birîna yek ji Pêşmergeyan sivik e û piştî dermankirinê ew rakirin malê û birîna Pêşmergeyê din dijwar e û dermankirina wî li nexweşxaneyê didome.

# Dêra Rojhilat ji Amerîka hat Kurdistanê

Hêmin Dildar

Dema li literatura heyi ya li ser asûrî/ keldaniyan tê nêrin ev her du navên hatine gotin derdikevin pêşberî me. Her wiha ji bilî van peyvan, peyva asûrî yan jî bêjeya "nasturî" jî derdikeve pêşberî me û ew jî gelek caran di şûna wê peyvê de tê bikaranîn. Dema ku em tên ser bêjeya duyem bêjeya keldanî jî em li wê yekê rast tên ku ev bêje jî ji bo bawermendên Dêra Sûryaniyan a Rojhilatê tê bikar anîn. Li hêla din tê zanîn ku keldanî di sedsala 16'an de tevî dêrên xwe hatinê ser Dêra Katolîkan. Di warê tesnîfkirin û zanyariyên li ser baweriya asûrî û keldaniyên hin jî girift hene û bi taybetî di warê pênasekirina wan herdû navên ku hatine bilêvkirin, hin jî dibin mijarên niqaşê yên zanyarên teolojiyê.

**Peyvên asûrî/nastûrî/keldanî**

Li jor em li ser wê yekê rawestiyan ku li ser wan peyvan rawestiyan û me nîqaşên li ser wan anî ziman. Em dikarin vê yekê tekez bikin ku navê "nastûrî" ji Patrik Nestoriusê Stenbolê yê sedsala 5'an tê. Di sala 431'ê de Patrîk Nestorius beşdarî Konsîla Efesê nebû û ew konsîl boykot kir. Her wiha beşdariya Konsîla Efesê jî ji ber nerînên Patrîk Nestorius pêk hatibû. Patrîk Nestorius amaje bi wê yekê dikir ku Îsayê Mesîh piştî 30 salî bûye xwediyê kelama Încîlê û nabe Meryem weke jineke pîroz bê hesibandin. Li gor Nestorius Meryem diya Îsayê dûnyewî ye û ew jineke saf e. Ew ne diya Îsayê Mesihî ye. Ew kesên ku bîr û boçûnên Nestorius ecibandin û dan dû wî êdî di wê serdemê de bi navê "nastûrî" hatin binav kirin. Li hêla din lêkolîner û teologên li ser vê baweriyê kar dikin hin jî di nava niqaşandene ka gelo cemiyeta nastûrî cemiyeteke etnikî ye yan dînî ye? Dema ku em tên ser peyva asûrî jî em li wê yek ê rast tên ku ji bawermendê Dêra Katolîk re asûrî tên gotin û di sedsala 19'an jî de ev nav berbelav bûye. Her wiha bawermendên vê dêrê amaje bi wê yekê jî dikin ku ew neviyên asûriyên sedema yekemîn în û wan mirata asûriyan domandiye.

**Belavbûna asûriyan a li cihanê**

Di dirêjahiya dîroka asûriyan de asûrî gelek caran rastî êrîş û komkujiyan hatine û cih û warê xwe terikandine. Weke bawermendên kurdên zerdeştî, ezdi, yaresanî asûriyên li Kurdistanê jî rastî tevkujî û komkijyan hatine û gelek dêrê wan hatin rûxandin û şewitandin. Êrîşa herî mezin a li ser asûriyan di sedsala 14'an de ji hêla Timûrleng pêk hat. Tîmûrlengê Mogol dema êrîşî ser Iraqê û Kurdistanê kir hemû aramgeh û îbadetxaneyên wan şewitand û rûxand. Her wiha di serdema modern jî de ji ber pêla niştiman perweriyê gelek hêz û koman êrîş birin ser asûriyan û bûn sedema tevkujiyan wan. Li hêla din şerê yekemîn û duyemîn ê cihanê jî tesîreke mezin li xelkê asûrî kir û cemiyeta asûrî li hemû cihanê belav bûn. Li gor zanyariyan asûrî welatên Rojhilata Navîn ên weke Kurdistan, Îran, Sûriyê, Tirkiyê, Urdûn, Misir û Lûbnanê belavbûne. Her wiha li DYA'yê û li Ewrûpayê jî gelek asûrî hene. Bi taybetî li Swêd û Swîsreyê asûrî bi cihbûne û li van herdû welatan xwedî hêzên mezin in. Ji bilî van herdû welatan li DYA'yê jî hejmareke zêde ya asûriyan heye û xwedî dêrên taybet in. Her wiha Dêra Asûrîyan a Rojhilatê jî heta niha li DYA'yê bû. Dêra Asûriyan a Rojhilatê û kursiya Patrîk ji bo Kurdistanê hat vuguhestin.



Li bajarokê Eynkawa yê parêzgeha Hewlêrê, merasîma danîna Patrîkê nû yê asûriyan birêve çû. Patrîk bi eslê xwe xelkê Dihokê ye û navê wî Gorgîsê Sêyem Silêwî ye.

**Vegera asûriyan a ji bo Kurdistanê**

Weke gelek pêkhate û ayinên cuda yên Kurdistanê Asûriyên ji Kurdistanê koç kirine û li gelek welatan belavbûne jî dest bi vegerê kirine. Li Başûrê Kurdistanê herî dawî di sala 2013'an de di makezagonê de di xala 140 de guhertin hat kirin û hemû bawermend û kêmneteweyên li Başûrê Kurdistanê weke hemwelatiyên eslî hatin qebûlkirin û mafê wan bi qanûnan hat pesend kirin. Piştî derçûn û pesendbûna qanûnên li ser cemiyet û pêkhateyên cuda cemiyetan dest bi gelek xebatan kirin û di wê çarçoveyê de gelek dibistan û weşan bi cih kirin. Li hêla din kêmnetew û ayînên cuda yên Kurdistanê di Parlamentoya Kurdistanê de bûn xwedî kursî û ji bo nûnertiya cemiyeta xwe dest bi polîtîkayan kirin. Bi vê mebestê pêkhateyên weke asûrî, ermenî, tirkmen li Kurdistanê dibistanên xwe vekirin û di wan dibistanan de dest bi perwerde kiriye.

Piştî vebûna Navenda Ola Zerdeştiyê ya li Silêmaniyê bawermendên ola asûrî yên Kurdistanê jî li hev kom bûn. Herî dawî di 28'ê îlonê de bi amadebûna berpirsên pilebilind ên Başûrê Kurdistanê û bi xwendina sirudên olî, merasîma destbikarbikarkirina Patrikê Asûriyên ê cihanê birêve çû. Li bajarokê Eynkawa yê parêzgeha Hewlêrê, merasîma danîna Patrîkê nû yê asûriyan birêve çû. Patrîk bi eslê xwe xelkê Dihokê ye û navê wî Gorgîsê Sêyem Silêwî ye. Di merasîmê de Serokwezîrê Herêma Kurdistanê Nêçîrvan Barzanî û Cihgirê Serokwezîrê Herêma Kurdistanê Qubad Talebanî û Sekreterê Polîtburoya PDK'ê û nûnerên çend welatan û Hikûmeta Iraqê jî beşdarî merasîmê bûn. Her wiha asûriyên ji gelek welatên cihanê hatibûn Kurdistanê jî di merasîmê de amade bûn. Di merasîmê de xêrhatin li patrîk hat kirin û gelek peyamên din hatin bilêvkirin.

**"Şehîdên asûriyan sembol in"**

Her wiha Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî jî li bajarokê Eynkawa yê Hewlêrê serdana Patrîkê Dêra Rojhilat a Asûriyan Mar Gorgîs kir. Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, li gel Mar Gorgîs civiya û got: "Herêma Kurdistanê li hember mesîhiyan erkê xwe bi cih aniye, lê eger kêmasiyên me hebin, hêvîdar im li me bibûrin. We di şoreşên Kurdistanê de gelek şehîd dane û ew şehîd sembolek in bo me hemûyan." Patrîkê Dêra Rojhilat a Asûriyan Mar Gorgîs jî di bersiva gotina Barzanî de, spasiya Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî kir û wiha axivî: "Em hest nakin bi serdan hatine Kurdistanê, em hest dikin li welatê xwe ne. Mar Gorgîs di berdewamiya axaftina xwe jî de eşkere kir ku divê ew peywendiyên xwe baştir bikin û li Rojhilata Navîn siberojeke hevpar ava bikin. 123'emîn Patrîkê Dêra Rojhilat a Asûriyan li Dêra Asûriyan a Aynkawayê dest bi karê xwe kir. Patrîk Mar Gorgîsê Sêyem ku ji bajarê Dihokê ye, bû patrîkê nû yê asûriyan. Kursiyê patrîk ji DYA'yê bo Herêma Kurdistanê hat veguhestin.





Özkan Gökcan:

# DYA ji bo Cerablûsê

**Sedema nerazîbûna Tirkiyê ew e ku DYA ji PYD'ê û YPG'ê re dibêje; 'ew ne komên tororê ne' Tirkiye ji ber vê yekê aciz e. Rayedarên Tirkiyê jî bi israr eşkere dikin ku YPG û PYD komên terorê ne. DYA'yê jî bi taybetî di van demen dawî de bi dengekî bilind anîn ziman ku ewê piştevaniya kurdan bikin û ew ê PYD û YPG'ê di şerê li hember DAIŞ'ê de serkeftinên mezin tomar kirine.**

Siwar Bedirxan

Welatên ku dixwazin li Rojhilata Navîn bibin xwedî hêz û yên naxwazin hêza xwe ya heyî ji dest bidin zêdetirî 4 sala ye li Sûriye'yê ji ser rêxistin û hevalbendên xwe ve bi hev re di şer de ne. Bi vexwandina Beşar Esad a operasyonên Rûsya'yê yê li hember DAIŞ'ê û komên din ê îslamî tekez dike ku ew ê payîza Sûriye'yê jî weke havîna wê germ derbas bibe. Weletên DYA û Ewrûpa bi operasyonên Rûsya'yê re gihiştin wê baweriyê ku Rûsya, Çîn û Îran jî di Rojhilata Navîn de xwedî hêz in û tu kes nikare ya xwe li Rojhilata Navîn ferz bike. Digel van rûdanan Tirkiye ya ku hemû plana xwe ya Sûriyê li ser têkçûna Beşar Esad ava kiribû û piştevaniya komên tûndrew dikir û ji bo avakirina herêmeke ewle di nava hewldana de bû êdî ji mayîna Esad a li ser Serokkomariyê razîbûye û bejeyên "herama tampon" nema tîne ser ziman.

Li hêla din Pêşmergeyên Rojava yên li Başûrê Kurdistanê li hember DAIŞ'ê şer dikin jî ji bo derbasbûna Rojava li benda fermana Serokê Herêma Kurdistanê ne. Her wiha tê zanîn ku ew ê bi beşdariya hêza Pêşmergeyên Rojava hêzên kurd li Cerablûsê li hember DAIŞ'ê operasyoneke mezin bidin destpêkirin. Em bi akademîsyen Özkan Gökcan re li ser geşedanên dawî yên li Sûriye'yê û Rojava, operasyonên Rûsya'yê, polîtîkayên Tirkiye'yê û derbasbûne Pêşmergeyên Rojava axivîn. Gökcan eşkere kir ku DYA ji bo operasyona Cerablûsê di dewrê deye û DYA'yê dixwazr Pêşmerge û YPG DAIŞ'ê ji Cerablûsê ji derxin.





**Ji sala 2012'an ve ye krîza siyasî ya li Sûriye'yê bi awayekî dijawar berdewam dike. Li gel berdewamiya şerê navxweyî û krîza siyasî komên radîkal bi çekdarên biyanî yên ku ji Asya û Ewrûpayê tînin êrîşî ser Kurdistanê dikin. Gelo çima van kom û grupên radîkal Kurdistan ji xwe kirine armanc û bi berdewamî êrîşî ser Başûr û Rojavayê Kurdistanê dikin?**

Du hokarên êrîşên van komên çete hene ku Kurdistanê ji xwe re dikin armanc. Hokarek jê giştî û hokerek jî xususî ye. Hokara giştî ev e; DAIŞ û komên din ê radîkal û tûndrew hemû dixwazin li Rojhilata navîn bibin xwedî desthilat û qada xwe ya desthilatdariyê xurt bikin. Li gora vê armancê DAIŞ'ê û komên din ê radîkal Kurdistan wisa dihesibandin ku dikarin li wir bibin xwedî hêz û li wir bi cih bibin. Lewre Kurdistan ji xwe re kirin amrnanc Polîtîkaya DAIŞ'ê ewe ku bi hemû dijminên xwe re şer dike. Bi welatên ku berjewendiyên wan hevparin re şer dike. Armanca DAIŞ'ê jî ew bû ku li Kurdistanê bibe hêz û qeweteke mezin, lewre êrîşî Kurdistanê kir. Hokara din jî ev e; DAIŞ'ê destkeftiyên kurdan ê li Başûrê Kurdistanê û li Rojavayê Kurdistanê ji xwe re weke xetere didît. Demokrasiya ku li van herdû parçeyên Kurdistanê rû da ne metirsî bi DAIŞ'ê re çêkirin. DAIŞ dixwaze gelek salan li Rojhilata Navîn bimîne û cihê desthilatdariya xwe berfireh bike. Demokrasiya Başûr û Rojavayê Kurdistanê ji raya giştî ya DAIŞ'ê metirsî ye. Weke me anî ziman DAIŞ ji van her du parçeyên Kurdistanê aciz e. Niha li Rojhilata Navîn yekane hêza ku li hember DAIŞ'ê şer dike hêza kurda ye. Raya giştî ya cihanê jî ev yek qebûl kiriye. Hokara taybet jî ev e. DAIŞ û komên din ê tûndrew ji ber van sedeman Kurdistanê ji xwe re dikin armanc.

**Destkeftiyên kurdan ên li Rojava di şerê Kobanê de hat rojeva giştî ya cihanê. Her wiha koalisyona navdewletî ya ku êrîşan dibe ser DAIŞ'ê di şerê bejayî jî de dest bi piştevaniya YPG'ê kir. Her çend DYA'yêû gelek welatên ewrûpî piştevaniya xwe ji YPG'ê re eşkere dikin jî gelo çima Tirkiye bi israr YPG'ê weke rêxistineke terorê bi nav dike?**

Sedema nerazîbûna Tirkiyê ew e ku DYA'yê ji PYD'ê û YPG'ê re dibêje; 'ew ne komên tororê ne' Tirkiye ji ber vê yekê aciz e. Rayedarên Tirkiyê jî bi israr eşkere dikin ku YPG û PYD komên terorê ne. DYA'yê jî bi taybetî di van demen dawî de bi dengekî bilind anîn ziman ku ewê piştevaniya kurdan bikin û ew ê PYD û YPG'ê di şerê li hember DAIŞ'ê de serkeftinên mezin tomar kirine. Helwesta DYA'yê Tirkiye'yê aciz dike. Lewre Tirkiye YPG'ê weke tehdit dibîne. Yek ji wan sedemên nerazîbûna Tirkiye'yê jî peywendiya wê ya bi PKK'ê re ye. Rayedarên Tirkiye aşkere dikin ku PYD û YPG bi ser PKK'ê ve ne û ew xeterene ji bo Tirkiye'yê Li hêla din Tirkiye destkeftiyên YPG'ê û PYD'ê yê li Rojava û li Rojhilata Navîn ji bo xwe ne baş dihesibîne. Ev feraset dibe asteng di navbera danûstendinên Tirkiye'yê yên bi PYD'ê re. Her wiha kurdên Rojava berê jî çend caran anîn ziman ku ew kêfxweşîn û dixwazin bi Tirkiye'yê re peywendiyan saz bikin û ew ji bo xaka Tirkiye'yê ne xetere ne. Rayedarên kurdan hîn jî vê yekê eşkere dikin.

**Ez dixwazim dîsa werim ser helwesta Tirkiye'yê ya li hember Rojava. Piştî ku DAIŞ ji Girêspî hat derxistin demil dest Riha, Dîlok Kîlîs û gelek navçeyên ser sînor mîlîtarîze kir û bi hezaran leşker û taqemenî şand ser sînorê Rojava û Bakur. Gelo çima Tirkiye'yê ewqas leşker şand ser sînor?**

Derxistina DAIŞ'ê ya ji Girêspî ji bo kurdên Rojava serkeftineke gelekî mezin bû. Lewre Girêspî di navbera Cizîrê û Kobanê'de di cihekî stratejik de cih digre. Tirkiye ji wê yekê ditirse ku kurd bigihên sînorên xwe yên xwezayî û Rojavayeke yekparçe ava bibe. Lewre Tirkiye'yê leşker û taqemenî şandin ser sînor. Çawa ji bo Kobanê û Cizîrê Girêspî di cihekî stratejik de bû û giring bû ji bo peywendiya Kobanê û Efrînê

# di dewrê de ye

xeta Cerablûs Merayê jî giring e. Cihekî stratejik e. Ji bo Rojaveyeke yekparçe divê rêyên di navbera Kobanê û Efrînê de bên vekirin. Ev yek jî bi derxistina DAIŞ'a ya ji xeta Cerablûs û Merayê mûmkûne. DYA'yê raziye operasyona Cerablûs ji aliyê Pêşmergeyan û YPG'ê bê kirin. Û em dikarin bejin ji bo ku ev yek pêk were DYA'yê piştevaniya herdu hêzan jî dike. Tirkiye jî niha yekser li hember operasyona Cerablûsê derdikeve û wê weke xeta sor bin av dike. Weke ku me got; Tirkiye xema wê yekê dixwe ku kantonên Rojava yên kurdan bibin yek. Tirkiye rewşeke wisa ji xwe re weke xetere dihesibîne. Li hêla din koalisyona navdewletî dixwaze Cerablûsê li sînorê Tirkiye'yê û Sûriye'yê derkeve. Lewre DAIŞ hemû piştevaniya xwe ya lojîstîk ji ser Cerablûsê peyda dike û dabîn dike. Ez wisa bawer dikim ku ew ê tevî hemû xetên sor ên Tirkiye'yê jî ew ê Tirkiye nikaribe li hember vê operasyonê bisekine.

**Piştî Civîna Giştî ya NY wisa dixuye ku ew ê "herêma tampon" a ku Tirkiye'yê dixwest ava nebe. Her çend Tirkiye'yê Balafirxaneya Leşkerî ya Încîrlîkê jî ji bo DYA'yê vekiribe jî gelo çima Tirkiye nikare "herêma tampon ava bike? Li hêla din daxuyniya Merkel a "Heta Tirkiye bi kurdan re şer bike avabûna herêma tampon ne mûmkûne" tê çi wateyê?**

DYA'yê û welatên li Sûriye'yê xwedî hêz in naxwazin herêma tampon ava bibe. Hokara avanebûna herêma tampon ew e ku Tirkiye'yê ew welat qanih nekir. Ji roja pêkhatina qeyrana siyasî ya li Sûriyê Tirkiye'yê herêma tampon, herêma ewle, herêma ji firokeyan re qedexekirî anî rojevê, lê belê rojeva welatên din ê cihanê ne ev bû. Her wiha Tirkiye'yê ji raya giştî ya cihanê daxwaza xwe ya herêma tampon eşkere nekir. Tirkiye'yê negot ez ê ji bo çi bikevim herêmê û li wir herêmeke tampon ava bikim. Tu kesî ji Tirkiye'yê bawer nekir. Gelo armanca siyasî ya herêma tampon şerê li hember DAIŞ'ê bû yan jî rê li ber girtina PYD'ê bû yan jî ev herdû bûn ew yek bi awayekî zelal derneket holê. Vê yekê kir ku guman û şik li ser helmetên Tirkiye'yê çêbibin. Ya rast nêrîna herî zêde li pêş ew e ku Tirkiye dixwaze rê li ber Rojavayeke yekparçe bigre û nehelê kurd li erdnîgariyeke yekgirtî bijîn. Daxuyaniya Merkelê jî di çarçoveya vê meseleye deye. Vê nezerê piştrast dike. Merkel li ser wê yekê disekine,Tirkiye niha bi kurdên li Tirkiyê re di nava pevçûnan deye û Tirkiyê PYD weke rêxistineke terorî ragihandiye, ew ê Tirkiye çawa rabe û herêmeke tampona ava bike?

**Giregirên hemû welatan, Serokkomarên hemû welatan beşdarî Civîna Giştî ya NY ya li New Yorkê bûn. Gelo Serokkomarê Tirkiye'yê Recep Tayyip Erdoğan çima beşdarî civînê nebû? Her wiha serdana Recep Tayyip Erdoğan a ji bo Rûsya'yê jî weke şikestxwarina Tirkiye'yê ya li Sûriye'yê hat şîrove kirin, hûn li ser vê yekê çi difikirin? Li hêla din wisa dixuye ku êdî Rûsya jî li Sûriye'yê daketiye qade şer ew ê ev yek çi tesîrê li destkeftiyên kurdan bike?**

Serdana Rûsya'yê ya Serokkomar Recep Tayyip Erdoğan tesir li beşdarnebûna wî ya li NY kiriye. Di nezera min de ew bû hokareke mezin. Wisa tê xuyakirin ku DYA'yê û Rûsya'yê ji çareseriya krîza Sûriye'yê li ser mana Beşar Esad li hev kirine. Bilêvkirina vê yekê ya ji hêla Pûtîn ve diyare ku Erdoğan aciz kiriye û ji ber vê yekê neçûye. Her çend Erdoğan li Moskovayê got, "ji bo demkî be jî Esad dikare bimîne" lê Erdoğan nexwest vê yekê li kursiya NY bîne ziman û dîmenê şikestxwarinê li wir nişan bide. Ez jî di wê baweriyê de me ku polîtîkaya Tirkiye'yê ya Sûriye'yê têkçûye. Di destpêka şerê navxweyî de weke xeta sor hat destnişan kirin ku divê Esad ji ser erka xwe here. Lê belê niha tê eşkerekirin ku Esad heta peydakirina çareseriyekê dikare li ser erka xwe bimîne. Eger rayedarên Tirkiye'yê van gotinan bilêvbikin ew jî dide eşkere kirin ku di vir de têkçûn û şikestxwarinek heye. Ev yek bêgûman ew ê tesîrê li polîtîkaya li hember PYD'ê jî bike. Di kurtedemekê de ji ber tesîra DYA'yê û Rûsya'yê ew ê Tirkiye hewl bide bi PYD'ê re diyalogê deyne û polîtîkaya xwe biguherîne.

> **Di serî de divê em eşkere bikin ku hem daxwaziya Îranê û hem jî ya Rûsya'yê ew e ku li Sûriye'yê rejimeke nezîkî DYA'yê ava nebe û Beşar Esad li ser erka xwe bimîne. Heta niha herdû welat jî destkeftiyên kurdan ji bo rejima Esad weke xetere nabînin.**

Daketina Rûsya'yê ya qada Sûriye'yê jî ji ber berjewendiyên navneteweyî ye. Beriya hemû tiştî Rûsya'yê bi operasyonên li Sûriye'yê re ji YE û DYA'yê re da zanîn ku ew hîn jî hêzeke mezin e. Rûsya'yê ji neçarî geşedanên Iraq û Lîbya'yê ji dûr ve temaşe dikir. Lê belê bi operasyona li Sûriye'yê jî re hem piştevaniya xwe ya li Esad dûpat kir hem jî peyamek da hemû cihanê. Pûtîn wê yekê baş dizane ku eger komên radîkal ên îslamî Beşar Esad têk bibin ew ê ew yek ji bo Rûsya'yê ne baş be. Lewre têkçûna Esad tê wê wateyê ku Rûsya hevalbendê xwe yê dîrokî ji dest dide. Lewre Pûtin ji helekê ve çek û taqemeniyan dide Esad û ji hêlekê jî ve li hember DAIŞ'ê dest bi operasyonan dike. Her wiha bangawaziya şerê DAIŞ'ê jî dike. Ev helwesta Rûsya da xuyakirin ku ew ê hevsengiya şerê li Sûriye'yê xirab bibe û destê Esad xurt bibe. Li hêla din dema em şerê kurdan ê li hember DAIŞ'ê didin ber çav û mûdahaleya Rûsya'yê jî em bibîrbînin em dikarin bejin ku ew ê destekeftiyên kurdan bêne parastin.

**Di serî de Pûtîn û gelek Serokkomarên din ê welatan di Civîna Giştî ya NY de serkeftinên hêzên kurd ê li hember DAIŞ'ê bilind nirxandin. Egera wê heye gelo Rûsya jî weke DYA'yê hemahengiyê bi Başûrê Kurdistanê û Rojava re deyne û di şerê li hember DAIŞ'ê de piştevaniya kurdan bike?**

Beriya niha Obama jî serkeftina kurdan a li hember DAIŞ'ê bilind nirxandibû. Rayedarên din ê DYA'yê jî gelek caran li ser serkeftinên kurdan rawestiyan. Daxuyaniyên bi vî rengî ji bo meşrûbûna doza kurdan a li Rojava gelekî giring e. Her wiha ji bo gihiştina raya giştî jî gelekî giring e. Rayedarên Rûsya'yê jî beriya niha gelek caran eşkere dikirin ku ew amadene piştevaniya kurdan bikin. Planeke wisa ya li hember şerê DAIŞ'ê dikare pêk were. Di vir de bêgûman ew ê helwesta DYA'yê giring be. Ez di wê baweriyê de me ew ê ne YPG ne jî Pêşmerge bereksî helwesta DYA'yê tevbigerin.

**Edî ew yek hatiye tekezkirin ku rola Rûsya'yê û Îranê dê li Rojhilaya Navîn zêde be.Li hêla din amadekariyên referanduma serbixwebûna Herêma Kurdistanê hene. Gelo ajandeyeke taybet a van aktoran ji bo kurdan heye?**

Di serî de divê em eşkere bikin ku hem daxwaziya Îranê û hem jî ya Rûsya'yê ew e ku li Sûriye'yê rejimeke nezîkî DYA'yê ava nebe û Beşar Esad li ser erka xwe bimîne. Heta niha herdû welat jî destkeftiyên kurdan ji bo rejima Esad weke xetere nabînin. Lê belê mirov nikare bêje yekser ew ê ev yek pêk were û ew ê helwesteke wisa nişan bidin. Dema ku em bên ser Rêveberiya Herêma Kurdistanê jî em dikarin vê yekê tekez bikin ku herdu dewlet naxwazin dewleteke kurdan a nezîkî DYA'yê ava bibe. Ez wisa bawer dikim ku ew ê herdu dewlet rê li ber serbixwebûnê negrin û ew ê ji bo têkbirina desthilatdariya DYA'yê ya li Rojhilata Navîn kar bikin.

**Di 15'ê îlonê de bi beşdariya rayedarên Pentagonê, Serokê PYD'ê Salih Mûslîm û Serokê Herêma Kurdistanê civînek birêve çû. Her wiha piştî wê civînê amaje li ser wê yekê hatkirin ku Pêşmergeyên Rojava jî ew ê derbasî Rojava bibin. Li hêla din tê zanîn ku operasyona Cerablûsê tê kirin. Derbasbûna Pêşmergeyan di qonaxeke wisa de ew ê bi xwe re çi bîne?**

Li ser siberoja Rojava di navbera siyasetmederan kurdên Rojava û Başûrê Kurdistanê de hin caran gengeşî rû didin ev yek tê dîtîn. Pêkhatina hin gengeşiyan jî gelekî asayî ye. Lewre du rêxistinên siyasî yên boçûnên ji hev cuda hene. Lê belê wisa xuya dike ku kurd ne kurdên berê ne û dev ji şerê birakujiyê berdane. Di vê çarçoveyê de çûna Pêşmergeyan a ji bo Rojava ji bo berxwedana kurdan gelekî giring û watedar e.

## Özkan Gökcan kî ye?



**Di Navenda Lêkolînên Aştiyê yên Navneteweyî û Rojhilata Navîn (IMPR) de weke pisporê Rojava û Başûrê Kurdistanê kar dike. Her wiha Gökcan li Zanîngeha Abant İzzet Baysal a Boluyê de weke akademisyen kar dike. Her wiha niha Gökcan bi navê "Di PolîtîkaTirkiye'yê ya li ser Sûriye'yê de Kêşeya Kurdistanê" teza doktorayê amade dike.**

Welat Baz

Bajarê Mîran

# MEHRAN





Bajarê Mîran, cîhê rihên pak û tavistan, serçaveya ava Mehran e. Mehran deriyê Îlam, palepişta çiyayên Zagorsan e. Evder bajarê Mehran, sînorê Kurdistanê ye.

Mehran li Rojhilatê Kurdistanê bajarekî eyaleta Îlamê ye. Bajêr bi erdnîgara xwe ya delal yek ji cîhên nasraw yê heremê ye. Mehran di navbera merîdyenên 33 pile û 7 xulekê başûr û 47 pile û 9 xulek li rojhilat cîh digre.

**Erdnîgar**

Firehiya xaka bajêr 4029 kîlometre çargoşe ye. Avhewaya bajêr tavistane. Havînan gelek germ û zivistanan jî sar e. Herçend klîmayeke germ û çolî li heremê serdeste jî, derdora bajêr bi darên kesk ve xemilandî ye.

Erdnîgara Mehran li Kurdistanê yek ji deverên gelek balkêş e. Erdîma bajêr ku dûrî rêzeçiyeyên Zagrosan dikeve, bejî û berî ye. Ji ber vê yekê havînan gelek germ e. Li derdora bajêr hin girên nizm yên sîlsîleyên Zagrosan hene.

Bajêr herçend li ser deşteke fireh hatibe damezrandin jî derdora Mehranê ji alî hin girên Zagrosan ve hatiye pêçan. Xaka bajêr ji deryayê 150 metre bilind e. Girên herî berz yên derdora Mehranê Kewî Kolek û Kewî Kewerko ne.

**Rêvebirî**

Bajarê Mehranê di navbera eyaleta Îlam û xaka Iraqê de cîh digre. Ji bakûr ve Dehloran, li başûr ve Salihawa, ji rojhilat ve Qela Dere û li rojava jî xaka Iraqê cîranê Mehranê ne. Mehran 100 kîlometere dûrî peytexta eyaletê Îlamê û 450 kîlometre dûrî peytexta eyaleta Kurdistanê Sîne ye. Mehran li gor pergala rêvebiriya Dewleta Îranê bajarekî Eyaleta Îlamê ye. Mehran yek ji bajarên biçûk yê eyaleta Îlamê ye.

**Şenî, ziman û ol**

Şêniya bajarê Mehranê nêzî 50 hezari ye. Bi bajêr ve girêdayî gelek xopan û gund hene. Şêniya bajêr bi giştî kurd in. Li heremê piranî eşîrên lek û feylî dijîn. Herçend li bajêr û derdorê lorî û soranîaxêf hebin jî, rûniştvanên bajêr piranî bi zarava Lekî û devoka mîranî diaxifin. Zarava lekî ya mîraniyan, ku wek „pêşko“ jî tê navdan, zaraveke têkele û ji hemû zarav û devokên din yên kurdî wûşe vergirtiye.

Di nav kurdên Mehranê de Muslumanên Sunî, Şîi û Ehlî Heq jî hene. Beriya hatina Îslamê bajêr yek ji nawenden pîroz yê Zerdeştiyan bûye. Li Mehranê zêdetir Muslumanên Şîa yên 12 Îmamî dijîn.

**Nav**

Di demên kevn de herem tevî ostana Îlamê ji alî kurdan ve wek „Paşko“ dihat binavkirin. Mehrana Paşko di dema rejima Şah Riza de wek Mensûrawa dihat binavkirin. Piştî şoreşa Îslamî navê bajêr wek Mehran hat guhertin. Rûniştvan Mehranê bajarê xwe wek 'Mîran an jî Mîhran' binav dikin. Navên ku niştecih li bajarê xwe dikin hem di wateya 'welatê mîran hem jî di wateya cîhê tavê' tê gotin. Wek tê zanîn 'mîhr' di hin zaravayên kurdî de tê wateya 'roj' an jî 'tav' ê. Di demên kevn de Mehran ku bajarokekî biçûk bûye, di bîranînên niştecihên kal de wek gundekî tê ziman. Ji pîrekalên Mîranê, Melîk Mihemedê Melîkî behsa rojên kevn yê bajarê xwe dike.

**Dîrok**

Di dîroka nûjen ya Mehranê de salên 1980an di rabirdûya vî bajarî de demên herî nebixêrbûn e. Ji ber ku li ser sînor bû, piştî destpêka şerê Iraqê, Artêşa Baasî, Mehran jî di nav de beşek ji xaka Rojhilatê Kurdistanê dagir kir. Di pêvajoya şer û dema dagirê de bajêr zirarên mezin dîtibû. Di şer de bi sedan rûniştvanên Mehranê hatin kuştin û ewçend jî hatin dîlgiritin an jî brîndarkirin. Dema artêşa Saddam ji bajêr vekirşiya, li pey xwe wêraneyekî hiştibû.

**Qele**

Li Mehranê ji bermehên dîrokî yê herî girîng Qelay Walî Guncan e. Ev qele 5 kîlometre dûrî bajêr li keviya Çemê Mehran hatiye avakirin.Ev berhema kevnarê ji alî waliyên Loristanê di sedsala 18an de hatiye çêkirin. Hingê li Îrana nawendî hukumdariya Kaçaran hebûye. Qele ya Walî Guncan, ji alî desthilatdarên demê ve wek havîngeh hatiye bikaranîn. Bingeha avahiyê li ser erdeke çargoşe hatiye danîn. Mimariya vê berhemê ji mînakên klasîk yê Îslamî ye. Di nav avahiyê de gelek deriyên ku wek labîrentan bihevre hatine girêdan hene. Bi taybetî deriyê mezin yê avahiyê û kemberên hindirîn balkêşin. Ser avahiyê bi gumbetan hatiye girtin.

Di nav avahiyê de gelek odeyên razanê, mitbex, hewşeke mezin, hemam, kîler û depo, zindan, herwiha gelek qurfeyên pirarmanc jî hene. Qele di dema xwe de li heremê wek meqerekî leşkerî û mêvanxaneya mîran jî hatiye bikaranîn. Leşkerên avahiyê ewlekariya rêya bazirganiyê temîn kirine.

Avahî herçend hin xesar dîtibe jî, hîn li ser piya ye. Di avahiyê de ji bo beşên xerabûyî xebatên restorasyonê hîn jî didome. Avahiyên hindirîn yên qelê bi kerpîç, tûxle û geç hatine lêkirin. Derdora avahiyê wek qeleyekî bi dûwarên sûrê ve hatiye parastin. Li ser dîwarên qele ji bo çavderiyê 4 bircên bilind jî hatine avakirin.

**Mizgeft û tirbe**

Berhemeke din dîrokî ya bajarê Mehranê, mizgeft û tirba Îmamzade Seyîd Hesen e. Îmamzade Seyîd Hesen yek ji alimên heremê ye û di sedsala 17an de jiyaye. Ev mizgeft ji bo bîranîna wî li ser tirbeya wî hatiye avakirin. Tirbe di nav avahiya mizgeftê de ye. Derdora tirbê bi qefeseke hesinî hatiye girtin. Mizgeft li ser qaîdeyekî çargoşe ye. Ser banîyê mizgeftê bi gumbetekî hatiye girtin. Dîwarên avahiyê pirranî bi mozaîkan hatiye xemilandin. Hindirê mizgeftê bi nexş û ziravkariyeke ciwan hatiye xemilandin. Dîwarên hindirîn bi mermeran hatiye pêçan û bi çînî û mozaîqan jî hatiye xemilandin. Mîmbera mizgeftê bi darên neqişandî hatiye çêkirin. Kîtabeyên navîn ji alî hostayên ziravkar ve hatine çêkirin. Xalî û ferşên zemînê karê destî yên Kermanşa ne. Dû minareyên mizgeftê li kêleka hevûdû ne. Rojane gelek Mehranî ji bo dûa, sena û mirazan tên serdana tirbê.

**Sûk**

Sûka Mehranê wek panayirekî ye. Li kolanên bajêr tîcaret, ziyaret û muhabet di nav hev de heta derengê şevê dajo. Aboriya Mehranê li ser kîşewerizî, ajaldarî, kasibî û bazirganiye. Wek gelek deverên Rojhilatê Kurdistanê li bajêr sanayî an jî endustrî nîne. Dewleta Îranê li heremê tesîs û fabrîqayan dananiye. Li sûka bajêr jî bi ber germê havînan bazirganî mirî ye. Kasib Vahid Demiran rewşa aboriya Mehranê wiha tîne ziman. Ji ber ku bajêr li ser sînore, bazirganî pêşketiye. Ji bilî bazirganiyê gelê bajêr zêdetir bi berhemên kiştûkalî debara xwe dike. Li Mehran çend nawendên bazirganiyê hene ku rûniştvan li van deveran lazmatî û pêdiviyên xwe yên rojane tedarik dikin. Ji kasibên bajêr Xusrewê Cîhanî behsa bazara Mehranê dike. Pasajî Şar yek ji deverên bazirganiya bajêr e.Pasajî Şar di nav bajêr de di salên dawîn de hatiye damezirandin.









**Falafil**

Yek ji firoşkarê herî mijûl yê sûka Mehranê falafilfiroş e. Falafil ji arvanê nokê, pîvaz û sîrê tê çêkirin. Piştî ku hevîr tê amadekirin, di qalibê kofteyê de berî nav rûn dibe, û di wir de tê sorkirin. Paşê falafil tevî sebze di nav nanê sêlê de tê amadekirin. Hosta Saman Seyid Hesen behsa karê xwe û awayê çêkirina kofteyan dike. Falafilên ku ev hosta çêdike heta êvarê bi sedan kesî têr dike. Ji ber lezzeta ev falafilan birçiyên sûka Mehranê rêya xwe bi virve dixin. Hosta Saman ji bilî falafil çend cûre sandwîçên din jî difroşe û behsa wan jî dike.

**Şalê îlamî**

Mehran di warê destekarî de yek ji cîhên kevneperest e. Li bajêr hîn jî gelek pîşeyên kevnare dijîn.Xiyat yanê terziyê sûka Mehranê di nav dengê makîna dirûtinê de di alema xwe de dixebite. Şalê Îlamî di girêdana kurdî de lîbaseke navdar e. Ji ber ku rûniştvanên Mehranê bayixdana kincên kurdî dikin li sûka bajêr xiyatî ji pîşeyên zindî ye.

Wek hemû bajarê Kurdistanê xiyat di sûka Mehranê de jî cîhekî girîng digrin. Xiyatên bajêr, ku ji derameta karê xwe gazina bike jî, bi dilgeşî kincan didrûn. Xiyatxana Xiyabendî Îmam li Mehranê terzîxaneyeke navdar e, gelek kesan bi serûber dike.

**Xetad**

Li sûka Mehranê ziravkarên din jî dixebitin. Yek ji ziravkarê sûkê Elîriza Şoxlî ye. Li bajêr kesên ku dikan vedikin an jî reklaman dikin, Elîriza nasdikin. Lewra ew li Mehranê take ziravkar e ku tabelayên dikkan û reklaman amade dike ye. Xetad di dikkana xwe de hem wêneyan çêdikin, hem jî ji bo mal û dikkanan tabloyên cûrbecûr difroşe.

**Damdarî û kişewerzî**

Li heremê damdarî yanê ajaldarî jî pêşketiye û gelek cûre heywan tên xwedîkirin. Damdarî yek ji sektora debara gelê heremê ye. Keriyên mezin yên pez û garanên dawaran deştên Mehranê dinexşînin. Deşt û pirêzeyên Mehranê di mehên bihar û havînan de ji alî keriyên pez ve tên dagirkirin. Bazirganiya goşt û lawirên jîndar û berhemên ajaldariyê jî di aboriya bajêr de cîhekî girîng digre. Ji ber destdayina damdariyê, bazirganiya goşt û lawirên zindî li heremê pêşveçûye. Herwiha berhemên ajalvaniyê jî navdarin û li sûka bajêr cîhekî taybetî digrin.

Beşek mezin ji şêniya Mehran li gundan dijîn. Gundiyên heremê ji bilî damdariyê bi kîşewerziyê re jî mijûl in. Ji ber ku erdnîgara heremê bixêrûbêr e, li devere hemû cûre fêkî û sebze tên çandin. Çafer Çakûr behsa kîşewerziya Mehranê jî dike. Ji bilî nebatên wek genim û ceh, misir, kundir, kartol û lobiya jî tê çandin. Berhemên xaka Mehranê li bajarên cîran jî tên firotan.

**Mîdfex**

Midfexa Mehran jî nasraw e. Li bajêr gelek xwarin û xwaringeh hene. Ev restoranta hanê ku li Bilwara Seyîd Hesen e, yek ji xwaringehên naskirî ya bajêr e. Bi taybetî xwarinên goşt wek remza mitbaxa Mehranê ye, ji xwarinên sereke yê vê restorantê ye. Helbet ji goştê xweş yê pezê Mehranê kebaba bilezet tê çêkirin.

**Parkî şar**

Parkî Şar li bajêr cîhê sereke yê bîhndanê ye. Siya darên bilind û pelfireh rojên germ yên havîne talda yeganê ya bajariya ye. Parkî Şar si ser meydaneke mezin hatiye damezrandin. Nav parkê bi çîçek û darên rengareng hatiye xemilandin. Parkî Şar, di germa Mehranê de giraweke hênik e. Di germahiya mehên havînê de stara bajariyan siya bin darê vê parkê ne. Park li nav bajêr hatiye avakirin û bi gelek cûre dar û kulîlkan hatiye xemilandin. Rojên înê û yên bêhndanê ev park serapê bi bajariyan ve tijî dibe.

Taybetiyeke Mehranê dengbêjiya vî bajarî ye. Bajêr yek ji hêlîna mûzîka gelêrî ya kurdî ye. Li heremê gelek dengxweş muzîka gelêrî îcra dikin.



# Çend dewanê mamekîye de derheqê domanan de tayê adet û bawerî



Nadire Güntaş Aldatmaz

Cinîke ke kewte birênan ver, çend cinîyê zanayoxî yenê ke aye rê ardim bikerê. Nê cinî bi tecrube yê, dewe de kame ke domanan bîyaro venga nê cinîyan danê. Mabênê nînan de kî yewe tenêna wayîra hunerî ya. Her kes aye nas keno û wextê domanardişî de miheqeq venga aye danê. Wexto ke doman/e ame/ye dinya, cinîyan ra yewe bi keyf şona pîyê lajekî ra mîjdanî wazena, vana:

"Mîjdanîya mi bide, lajekêde to bî!"

Pî, kalik, dêke, ap, xale rewşa (durumê) xo gore mîjdanî danê. Na mîjdanî ge pere ge-gane kî çî-mî beno. Cinîyanê ke seba bîyayîşê domanî dixaskane (zacilane) rê ardim kerdo, ê kî xelata xo genê. Xelata înan kî pere beno, kincî benê yan kî çîyê werdene beno. Ancî ê cinî, nak cira kenê, pitikî sole kenê, binê pitikî/e wele kenê û pîşenê têra, kenê cile, kenê verara maye. Pîyê lajekî gama ke bîyayîşê lajekî dima reya verêne ber ra keweno zere, hîrê reyî pers kenê vanê: "Pî giran o, laj giran o?" Yew/e kî hîrê reyî cewab dano/a, vano/a: "Laj giran o" seba ke laj can bigîro, giran bibo.

Eke domane kêneke biba vengê her kesî beno kêmî, birîyêno. Kes mîjdanî nêwazeno, çunke seba kênayan kes mîjdanî nêdano. Kêna ke bîye, pî ra vanê "Canê to weş bo, ti hîna genc a hîna zaf domanê to aDomanardiş ra tepîya gama ke dixaskane embazek (alboz) da bi war ro, pê qumî -wela taybetîya ke seba têrapîştena domanî/e ya- yan kî pê pişke pîşenê têra, kenê cile. Pişke germin a, hem kî gonî ancena. Bi taybetî zimistanan, eke zaf serd bibo, pişke kenê binê dixaskane ke hem germine bo hem kî gonîya ke aye ra şona, bianco.

Dixaskane ra zaf gonî şona, coka aye rê çîyo rûnin, mavajî werdê ke ci ra "hayîz", "bişî", "soxraz", "nonê tawa"yî vanê, pewcenê, danê dixaskane.



Nê werdî zaf rûnin ê û qewet danê bi merdimî.

## Pitikî/e Sole Kerdene

Pitik/e ke maya xo ra bî/ye, nak cira kenê, sole kenê û winî pîşenê têra. Eke doman/e şewdir ameyo/a dinya, heta şan sole de vindarnenê, şan de şunê. Eke şan de ameyo/a dinya kî heta şewdir sole de vindarnenê, şewdir şunê. Tayê cayan de kî çend saetî sole de vindarnenê dima şunê. Sole kerdene kî nîya bena: Çitur ke merdim sole saneno bi germî ro winî yo. Girmikê sole gênê destê xo, sanenê piro û pîşenê têra.

## Nak

Nak, mîyanê hefteyê de gineno war ro. Nakî pulesnenê bi kaxite ro, benê cayo ke wazenê tey wedarê, uca de darenê we. Mavajî ê ke biwazê lajek biwano, nakî benê dizdîya dorme yan kî zereyê mektebî de darenê we. Eke biwazê lajê xo wayîrê mal-gay bo, nakî benê, gore de yan kî axur de darenê we. Yanî seba lajekî kamcîn meslek wazenê, goreyê ey nakî darenê we.

## Têra pîştene

Solekerdişî ra dima paçê qundaxe fînê ra, tenê wele -seba binê domanan welade taybetîye esta- kenê ser ro, pitikî/e kî wele ser o nanê ro. Ganî wele dustê mîyanî ra cêr bo. Her di bazîyê pitikî/e nanê re kaleke ser û qundaxe her di hetî ra anê pêser, pê dangî pêt girê dane. Winî beno ke pitik/e nêşîkîno/a ke xo bilewno. Sereyî kî cîya girê danê. Kulike nanê re ser, dima çîte pulesnenê piro, girê danê.

## Domanî/e Gaj Kerdene

Reya verêne çiçik ci dayene rê "gajkerdişê domanî/e" vanê. Kame ke verê coy çiçik da bi pitikî/e, a pitikî/e gaj kena. Hîrê rojî çiçikê maye nêdanê pitikî/e, tena awa şekerine danê ci. Heta ke şit çiçikî ra bêro -hema-hema hîrê rojî ra tepîya beno zelal, yeno- dewe de kama ke şitê xo esto, domanê xo hîna lînê, aye anê leyê pitikî/e ke gaj kero. Yanî şitê verênî bido ci. Ancax seba şitdayîşî kî qaydeyê esto. Kesa ke şit dana, ganî çewresî de nêbo. Yanî çewresê xo vejîyaye bo. Eke winî nêbo çewresê her dîyine keweno tê. Çewres têkewtene kî rind nîya, domen/e rind nêbeno/a, can nêgeno/a, avêr nêşono/a.

Wexto ke pitikî/e gaj kenê, nameyê yewê zaf bi îştehî vanê, mavajî vanê: "Boxaz boxaz, boxazê Memî." Neyî çend rey pêsero vanê ke pitik bi îşteh bibo.

Vanê kamî ke pitik/e gaj kerde, şono/a re aye. Tayê xuyê xo şonê re aye. Mavajî hema-hema yê her kesî yew gajkerdoxa xo esta. Ge-gane kî eke doman/e tenê sist/e bî/ye, vanê "Ti vana qey ebe cî (gî) goj kerdo/a." Yanî werdê xo yo verên seke gî bîyo, coka hende sist o/a, deqa de reye gineno/a war o.

## Ver de Kaykerdene

Domane yan kî doman ke maya xo ra bî ganî hîrê rojî û hîrê şewî verde bivindê, çila nêsaynê we. Wexto ke lajek bî, kêneyî û lajekê azebî, hîrê rojî û hîrê şewî dixaskane ver de kay kenê. Kesê ke dixaskane verde kay kenê ra tayê tenêna wayîrê hunerî yê. Miletî danê arê, plan virazenê, karê her kesî ci rê pare kenê. Şan de yenê, resenê pê û heta şewdir kay kenê. Nê kayî ge sey tîyatroyî benê ge qilix vurnenê û dewe de keye bi keye

fetilîyênê, dewijan tersnenê. Ge-gane kî mabênê xo de, yewbînî de kay kenê. Heto bîn ra kî mird wenê. Keyeyo ke lajê xo bîyo, çêverê dunîke keno ya. Eke wext zimistan bo, tuyî, dendikî, vamî, bastêq û qaxî zafî yê. Heta şewdir bi keyf înan ra wenê. Tuyan kenê rûn, basmacî kenê rûn, hakan şiknenê wenê. Hingimên rûn û toraqî wenê.

Roja bîne, şewdir her kes şono keyeyê xo de kewno ra, nafa kî vistewrîye yan kî keye ra kesê bînî nobete dewr gênê. Heta şan kî ê pawenê. Şan de ancî gencî benê arê. No, nîya hîrê rojî û hîrê şewî dewam keno.

Bîyayîşê lajekan dahîna keyf dano bi miletî. Kêna ke bîye qismê "ver de kaykerdişî" zaf weş nêvêreno ra. Çîyê werdî bîle tenêna şenik o. Coka kes nêwazeno ke kêna bibo.

**Domanî/e Wedardene**

Hîrê rojî ke bî temam, çi lajek çi kêneke ferq nêkeno, domanî/e darenê we. Şeklê wedardişî wina yo: Keso/a ke domanî/e dareno/a we, her di destanê xo keno/a binê pitikî/e ra, cile ra hîrê reyî dareno/a we, tenê keno/a berz ancî nano/a ro. Her ke dard/e we kî "Bismîl-la" (pisimlayî) vano/a, winî dareno/a we û nameyo ke nano/a pira, goş de vano/a. Mavajî vano/a "Namê to yo xêr Wişen o, to rê ve xêr bo!". Hîrê reyî ke nîya va, reya hîrêyine de pitikî/e cayê neweyî de nano/a ro. Bîyayîş ra pey heta hîrê rojî pitik/e cila maya xo der o/a. Cila maye de nêbo kî ancî wexto ke dard/e we, ca vurnenê. Kenê kurnike, hêlaneke yan kî cayode bîn û seremonî qedîno. Dima nîyaz (nanê rûninî) û qirbanî kenê vila. Ge-gane ke hazirîye bikewa erey, qirban nêreso, wextê wedardene heta heşt rojî kenê derg. La seba wedardene roja heştine, roja peyên a. Qaydeyê wedar-dene yo rast, hîrê rojî ra tepîya yo. Tena mecburîyet ke bî heta heşt rojî mudetê xo esto.

Keso/a ke domanî/e dareno/a we ganî maye û pîyê xo weş bîy. Yanî wayîrê maye û pî bo û eke lajekode biaqil û baş bo dahîna meqbul o. Eynî wext de çiralix (xelate) danê ê kesê ke pitikî/e dareno/a we. Eke doman lajek bo, qîymetê çiralixî zîyade beno. Yanî tenêna çîyode hewl danê ci.

**Çewres**

**a) Çewres,** çewres rojê verênî yê domanî/e û yê dixaskane yê. Çewres rojî dixaskane bi xo keye ra dûrî nêşona, pitikê/a xo ca nêverdena, tena nêver-dena. Pitikî/e kî çewres rojî keye ra nêvejenê, keye ra dûrî nêbenê. Nê çewres rojan de û bi taybetî rojanê verênan de dixaskane rind kenê weyîye. Çîyê werdî yê zaf bi enerjî danê ci.

**b) Çewres Têkewtene**

Cinîyê ke eynî çewres rojan mîyan de doman anê, çewresê înan pêrune rastê yewbinî yenê. Pîyê ke çewresê domananê înan rastê yewbînî yenê teber ra yenê leyê yewbînî, çîyêde xo danê yewbînî ke çewresê înan tênêkewê. No çî wişîre




bena, destmale bena, adirge beno yan kî eyne beno. Çik ke tey esto, înan vurnenê. Bi no tore camerdî teber ra yenê têleye. Labelê keyeyanê yewbînî nêşonê. Keyeyê ke çewresê domananê înan rastê yewbînî yenê çîyê nêdanê yewbînî û çîyê yewbînî nêwenê. Dixaskanî kî nêşîkînê çiçik bidê domananê yewbînî. Cinîka dixaskana ke hîna çewresê xo nêvejîyo, nêşona meyîtî ser. Seba meyîtî kî çewres esto û uca de kî çewres kewenê tê.

Seba ke çewres tênêkewo, reye kî pancêsî de çewres vejenê. Belkî rewşêka zarurî pêda bena û dixaskane yan kî pitik/e mecbur maneno/a ke keye ra bivejîyo, coka pancêsî ke qedîya kî reyê çewres vejenê.

**c) Çewres Vetene**: Domanî/e heta ke çewresê xo nêveto, ci ra vanê domanê çewresî. Çewres rojî, her roje awe kenê piro. Her ke tasê awe kerde piro dua kenê.

Versîyonede duayî wina yo:
Yê goz, nezerî bo!
Yê îzan, marifetî bo!
Yê talî, êxpalî bo!
Yê canweşîye bo!
Yê aqilî bo!
Yê emrê dergî bo!
Verê kemera huşke de ronîsê, to rê bivoro!
Xirabinîye to ra dûrî bo!
Dost sa bo, dismen kor bo!

Merdim şîkîno ke nê duayan bizêdno. Heta ke awa pirokerdişî biqedîya, kamcî dua bêra vîrê merdimî, merdim şîkîno bikero. Yanî nê duayî kî sey ê bînan nuştekî nîyê, sînorê xo çin ê. Çiqas kena derg, derg bike.

Çewres rojî ra tepîya çewresê pitikî/e vejenê. Beroşî (sitilî) kenê pirê awe, cira çewres koçikî awe pêmenê, kenê zereyê fincike (tase) û pirojine sereyê pitikî/e ser o tepşenê, awe pirojine ra kenê war. Ancî dua kenê.

Wexto ke çewres vet hîna ke awe domanî/e ro nêkerda, çiqas ke kincî, çarşef û betanîyayê domanî/e estê, kenê zereyê leganî, domanî/e ê kincan ser o şunê. Dima kî ê kincan şunê. Yanî çewresê kincan kî vejenê.

Çewresê maye kî bi eynî usul vejenê. Yê maye kî kincan pêrune şunê.

Çewres ke vet, hem seba maye hem kî seba pitikî hîrê rey vanê: "Hardo dewrês, asmeno kewe, ti saad a ke çewresê xo ve-jîyo!" Êdî naye ra tepîya maye şîkîna ke keye ra bivejiyo, şoro cayan û ancî şîkîna ke pitik/e xo kî tey bero.

**Didan Vetene**

Domanî/e ke didano verên vet, danî pewcenê keye ra bi keye kenê vila. Tasa ke danî pê kerdê vila, peyser ke ameye



ganî pir bêro. Yanî tase ke çarnê ra, yan sabun yan çîte yan kî çîyode bîn kenê herinde, winî peyser ruşnenê.

**Ere Lingan Kewtene**

Doman/e ke kewt/e ra linge, koçeke remnenê. Ardî û rûn têorte de mîr kenê, yan bicika gilore yan kî nanêde taweyî virazenê. Orteyê bicike yan kî yê nanê taweyî kenê lone û pewjenê. Bicike ke pewjîye, layêde qalindî orteyê bicike ra vîyarnenê, sey xape virazenê û linga lajekî ra girê danê. Lajek yan verara maya xo de yan kî verara yewade pîle de beno. Ciwanî (gencî) dormeyê înan de yenê pêser. Kamî ke verê cû bicike girewte, anceno, linge ra xelesneno ra, gêno remeno. (Hîna zaf keso ke bi qewet o û pêt vaz dano, o bicike remneno.) Ê bînî kî verdanê dima, kotî ke pê girewt, vindarnenê û pêro pîya bicika rûnine kenê vila, wenê.

Nameyê nê karî "koçeke remnayene" yo. Eke remnê pêt vazdanê ke gama ke pitik bî pîl o kî rind vazdo, rind bifetelîyo, war ro nêgino (nêkewo).

**Didan War Ro Dayene**

Didanê domanî ke gina bi war ro, hîrê reyî pêsero vanê: "Cor de şêro jê herekî, cêr ra bêro jê vorekî" yan kî "Cêr ra şêro jê herekî, cor de bêro jê vorekî" û erzenê peye andalî. Manaya xo kî na ya: O ke gino bi war ro sey herî yo, sîya yo, qefçil o. O ke newe vejîno wa sey verekî bo, sipî bo, rindek bo.

**Merdena Lajan**

Yê tayênan domanê xo benê û mirenê. Ge-gane kî lajekî mirenê, kênekî manenê. Seba ke lajekî nêmirê, biciwîyê, şonê zîyaran ser û qirbanan danê. Hewt serrî porê lajekî cira nêkenê, porê ey sey yê kênekan kenê derg û sey kênekan fistan danê pira. Wexto ke hewt serrî ey qedîyay ancî qirban danê û dima porê lajekî cira kenê, êdî kincanê lajekan danê pira.

**Kerwayênî Kerdene:** Seba lajekan kerwayênî kî zaf muhîm a. Hîna zaf pî-kalikê lajekî, lajekî rê kerwa vînenê. Ge-ge o keso ke merdim ey ra zaf hes keno, beno kerwa ge-gane kî kesê ke mabênê înan de dişmenîye esta, yewbînî rê benê kerwa ke a dişmenîye biqedîyo.

Kerwayî yewbînî rê ganî sey way û birayan bê. Yewbînî rê xirabîye mekerê, yewbînî de dost û heval bê, can û malê yewbînî rê qesta xo çin bo. Yanî ganî bese bikê piştîya xo yewbînî ra girê bidê û her çîyê xo bêteredut teslîmê yewbînî bikê.

Wextê kerwayênî de kî rolê kerwayî zaf o.

Roja kerwayênî de şewdir ra wirzenê ra awe nanê re ser, girênenê der-ber kenê pak, awe kenê bi lajekî ro, pak şunê. Sunetçî, kerwa û ma û pîyê domanî yenê têhet. Kerwa pê lajekî gêno, sunetçî kî cira keno. Kerwayênî de sey veyveyî miletî dawet kenê û sazî (dawul û vîlîke) yenê cinîtene. Kerwayênî heyatê lajekan de zaf muhîm a.



Kerem Sevînç:

# Keso ke wayîrê dejî yo, hîna rast dinya ra fam keno





**Welat R. Ramînazad**

Kerem Sevînç, 1976î de Pîran de ameyo dinya. Heta lîse uca de wendo, badê seba perwerdeyîya unîversîteyî şîyo Dîyarbekir. Qasê 20 serrî yo ke uca de ciwîyeno. Albumê ey o verên Lome 2010 de vejîya. Ey 2012 de seba xovîrardişê Qirkerdişê Dêrsimî ser o bi nameyê 'Pîya Va' projêyêk viraşt. Albûmê ey o dîyin Dej do aşma teşrîna verêne de bivejîyo. Mi hunermend Kerem Sevînç dir albumê eyê neweyî; Dejî ser o qisey kerd.

**Eleqeyê to bi muzîkî sênî dest pêkerd ?**

Têkîlîya min û muzîkî orteyê serranê 90an, yanî serranê unîversîte de dest pêkerd. Min û tayê embazanê xo yê wendekaran yew gruba muzîkî saz kerdibî. Bi na grûbe ma sendîkayan de,dezgehanê kulturîyan de konseran organîze kerdenê. Dima na gruba ma vila bîye û mi zî rayîrê xo ra tena dewam kerd. 17-18 serrî yo ez muzîk îcra kena.

**Muzîk çi yo yan zî dinyaya to gorê mûzîk yeno çî mana ?**
**Ti çira mûzîk îcra kenî û wazenî bi mûzîkî se bikerî ?**

Manaya Muzîkî derg a la bi kilmî; muzîk îfadeyê ruhî yo. Nê hetî ra maneno edebîyatî, şîîrî; hetî ra zî goşeyê muzikî sey înan tuj nîyo.Yanî meramê îcrakerdoxî hîna xorîyan de geyrayîş wazeno. Muzîk de, îfadeyî sey sewbina huneran asan nînê ziwan, mana hîna xorîn a. Mi gorê hewce nîyo ke mesajêkê muzîsyenî bibo.Bingehê huneranê bînan de tayê qaydeyê qetî estê. Sînorê muzîkî hîrayêr o. Muzîsyen, halê ruhê xo, hîssîyatê dinyaya ke ey zereyê xo de weye kerda, bi muzîkî ano ziwan.

Mi gorê na dinya de her kes hendayê bîyayîşê xo esto. Heme însanetîye rê çi vateyê to esto, gerek ti îfade bikî. Qebîlîyeto ke dîyayo to, ganî ti eşkera bikî. No qebîlîyet wazeno wa îlmî bo, wazeno hunerî bo, yan zî felsefî bo, ferq nêkeno. Muhîm oyo ke no fealîyetê to; ciwîyayîşê însanetîye de, fikr û ruhê însanetîye de ferqêk, averşîyayîşêk, roşnîyêk bîyaro meydan. Ez bi na çarçewa penceraya xo yê muzîkî ra ewnêna dinya ra. Ez wazena hertim mîyanê de muzîkî de bibî, wa muzîk zereyê mi de kêmî nêbo.

**Ti eşkenî tayê albumê xo yê Dejî ra qal bikî û qey Dej ?**

Ez konseranê xo de zaf dorim goş dana goşdarîkerdoxan. Ma muzîk ser o suxbet kenîme. Sehne ser o de zî ge-ge ez derheqê yew babete ser o yew suhbetêkê kilmî akena. Yanî hetî ra ê mi goşdarîyênê hetê ra ez înan goşdarîyena. Yewbînan ra famkerdiş muhîm o. Nê goşdarîkerdoxî to ra çi wazenî ?, Ti çi danî înan? Hetê hunerî ra çîyo ke ti bidî înan esto ? Çimê to birneno ke vengê to bireso qelbê înan ?

Prosesê mino ke beyntarê 'LOME' û 'DEJ'î de, bi kilawuzîya nê persan vîyart. Eke ez berî çira DEJî ser. Ez vana qey keso ke wayîrê derdî yo ,wayîrê dejî yo, hîna rast dinya ra fam keno. Eke ti sereyê xo berz bikî biewnî însanan ra, ti vînenê ke; kam derd û dejanê xo ra haydar o, kam sereyê xo seba însanan, seba kulturî, seba aşitî, seba îlmî, seba hunerî dejneno o merdim kamîl o. Merdimanê bêxeman ra çîyêk pawitene veng a.

Ziwanê mi, mi rê derd o. Hetê kultur, huner û edebiyatî ra apeymendiş mi rê derd o.Têkîlîya însanan de bêzerrîyîye mi rê derd o,eşqê modernan de kemî/nêmcetîya hîssîyatan mi rê derd o. Pêserardişê nê derdan mi de yew dejo nimite ardo meydan. Her kes nêeşkeno derd û dejanê xo de bêro têrî (yüzleşme). Oyo ke haydarê nînan o, bi gamanê raştikên aver şino.

Mi zî no prosesê nê albumî de dejanê xo rê şahidîye kerd. Mi xo rexne kerd,analîz kerd. Mumkun mertebe mi hetanê xo yê pozîtîfan aver vet.Tabî ez bi temamî serkewte nêbîya, la mi sereyê xo zaf dejna. Coka ez ewnîyaya konseptê albumî ra nameye 'DEJ' mi rê hîna rastikên asa. Naye ra nameyê albumî DEJ bî.

**To şîîra mamosta Malmîsanijî Poşman zî bi hawayê deyîre wenda. Eka ez xelet nêbî, reya verêna ke kirdkî de yew şîîre bîya deyîrê. No fikirê hîşê to de sênî virazîya ?**

Zanayîşê mi gorê na reya verêna nîya. Mikaîl ASLANî serranê verênan de yewna şîîra M.Malmîsanijî ser o xebitîya bi û albume de sey deyîre ca da aye.Tabî derheqê Malmîsanijî de ez qayil a zaf çîyan vajî la no roportaj qîm nêkeno. Tena 'Malmîsanij', yan zî têsîro ke ey mi ser verdayo belkî do bibo babeta sewbîna yew roportajî. Çunke înasar merdimê munewerî her wext nêvejîyênê. Ez Kurdolojîyê Artukluyî de programê masterî de beşa Zazakî de demek bîya wendekarê ey. Ma bê unîversîte zî ge-ge pîya wext vîyarnayenî. Ez ey ra hem formal hem înformal zaf çîyan musaya. No semed ra ez xo sey wayîrê şansêk hesibnena.

Gelek nuşte,kitab û cigêrayîşanê mamosta Malmîsanijî ra yew zî kitabê şîîran yê ey o. Heme şîîrê ey zî yewbinan ra xorin ê. Belkî şima rê mubalaxa bêro la mi 2-3 hewte de nê heme şîîrî ezber kerdî. Feqet na şîîra ke mi beste kerda, sewbîna yew ca de vejîya mi ver o. Zaf weş bi mi şîye.

"Eke ti derdan tew bidî dima ti zaf poşman benî
Bizane ez fek akera kilî mi fek ra perrenî
Ti qet wina meewni na bêvengîya bêvengi ra
Bizane ez wele bîya bêhesî û bêkesî ra"

Tabî vateyanê xo rê beste viraştiş rehet o la yew şîîre rê muzîk viraştiş çetin o. Hela ke na şîîre yê Malmîsanijî bo hîna çetin beno. Neyse ez derg nêkerî; rojêk mamostayî ez û çend embazan dawetê keyeyê xo kerd.Tabî ê embazî zanayenê mi muzîk viraşto na şîîre rê.Uca de zî qalê ci bî û mi gîtar cinit û aye vat. Mamosta zî îzîn da, mi winî girewt repertuarê albumî. Tîya ra ez M. Malmîsanijî rê zî zaf-zaf selam û hurmet kena.

**Deyîranê to de merdim xo, rewşa ewroyine ya şarê xo, welatê xo, xorînîya ziwan û kulturê xo vîneno. Na dewlemendîye kamca ra yena ?**

Ez nê vateyanê to sey îltîfatî hesibnena. Goya ma 'Wextanê Modernan' de ciwîyenê. Ma hetêk ra ûsulanê nê çaxî ra pêra beste yê, heto bîn ra ma yew hengame yew firtine mîyan de ciwîyenê ke ke qet meperse! Ma ne bîy însanê modernî, ne zî dewijîya xo ra derabîye. Halê jenerasyonê mi -û oyo ke mi ra verî- hîna xirab o. Enteresan o; no beyntarde mendiş mi rê hîna makul yeno.Tebîî yo ke no wezîyet, têsîrê muzîkê mi zî keno û vengê mi de gulbang dano.

**Zafê hunermendê ma bi ziwanê ma muzîk îcra kenê la cuya inana rojane bi tirkî ya. Ti derheqê na rewşe de çi vajî ?**

Yew vateya verênan yê ma esto,vano: 'Şand de îqrar û îman, şodir de toz û duman nêbeno'. Eke hunermêndo ke vîzyonê xo estbo gani xo rê raşt bo.Karê hunerî de semimîyet çîyo ke muhîm o. Goştarekerdoxî xapênayîşî lez fam kenê. Opsîyono ke dayo to, ca de apey gênê.

**Seba ropartajî ez to rê zaf sipas kena. Wa DEJ nika ra bixêr bo. Eke vateyê to yê peyênî estê ma înan zi bigîrê.**

Ez 3 serrî yo ke albumê DEJî ser o xebetîyena. Album viraştene çîyêko zehmet o. Hele muzisyenê Kurdan rê hîna zor o.Çunke ma hetî ra mîyanê de yew cengî de hetî ra ma ser o asîmîlasyonê dewlete esto û ma vera nînan mucadeleye kulturî kenê. Ez miletê ma ra wazena ke wa wayîrê nê albûm bivejîyo. Ez wendoxanê şima rê zaf selam kena û to rê sipas kena.





Li gor agahiyan Ûzûn, demekê li ser vexwendina Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî diçe Başûr û ji Mesûd Barzanî re gotiye; "Ez dixwazim romana meşa dirêj û destanî ya Mele Mistefa Barzanî û Pêşmerge'yan binivîsim" lê belê mirirna zû destûra vê yekê nade.

**Mehmed Uzun:**

# Nûserê jiyana mişext û mirina pêşwext

**Lîsa Deysem**

Li gel rexnekirina romannûsiya wî jî tu kes tune ye ku sûda keda wî li pirtûkxaneya kurdî nebîne û navê wî wek îmzeya herî xurt û navdar a wêjeya kurd nehesibîne; Lewre ew nûserê romana nûjen a kurdî ye û bi berhemên xwe rêyeke qerase li pêş romana kurdî vekirî ye. Bê guman em qala honannûsê bîra qedera jîndarê kurmancî Mir Celadet Bedirxan, Mehmet Ûzûn dikin. Di 8. salyada Ûzûn de me ew ji hevalê wî nivîskar Şehmûs Dîken pirsî û Dîken jî meselokên Ûzûn ji me re vegotin.

**'Ji nûciwanî ve rewşenbîriya wî diyar bû'**

Her çiqas di nav bizav û tevgerên siyasî de cih bigire jî, hê ji nûciwaniya xwe hewla xwe ya rewşenbîrî diyar dike. Nivîskar Şehmûs Dîken ku di salên 80'yan de li Enqere'yê hevaltiya Mehmet Ûzûn dike qala wan salên Ûzûn kir û got ku Mehmed Uzun, li Enqere'yê di nav bizava ku li derdora Govara Rizgarî û dû re jî li dora Ala Rizgarî birêxistinbûye cih girtiye û hê ji dema lîseyê ve nasnameya xwe ya rewşenbîrî afirandiye û xwediyê pênûseke serkeftî bûye. Diken got: "Uzun, hê di dema lîseyê de digel pêşeng û rêberên siyaseta kurd ku pir jê mezintir bûn, li girtîgeha Amedê maye û wan nas kiriye û bi vî awayî jî nasnameya xwe ya rewşenbîrî geş kiriye. Beriya Cuntaya 12'ê Îlonê ku êdî rewşeke tarî hêdî hêdî xwe dida der Uzun jî dizanibû wê bikeve hepsê û ji ber vê yekê bi ser Sûriye'yê ve diçe Ewropayê. Jixwe di romana "Tu"yê de qala van tiştan kiriye." Diken anî ziman ku wan wek Komeleya Rojamevanên Başûrê Rojhilatê (Güneydoğu Gazeteciler Cemiyeti) di sala 1997'an de ew vexwendine Amedê ku 20 sal piştî sirgûniyê Uzun cara pêşî dihate Amedê, wan çaxan li binê sûran lokala komeleyê hebûye û wan jî li wê derê hevpeyvînek pêk anîne bes ji ber ku polêsan bi hejmara ji beşdarvanan gelekî zêdetir dora lokalê dorpêç kirine û ji ber tirsê tenê 37-38 kesên 'wêrek' hatibûne hevpeyvîne, ji vê bonê Uzun gelekî xemgîn bûye."

**'Divê ez herikandina çemê Dîcleyê bibînim!'**

Diken, serpêhatiyeke balkêş parve kir û got ku di sala 2007'an de Uzun, lê geriyaye gotiye ez romana 'Hawara Dîcleyê' dinivîsim, ji ber vê jî divê ez herikîna Dîcleyê bibînim û ew çûne cem Pira Deh Çavî; Lê wê demê Çemê Dîcle'yê pir lawaz bûye, jiber vê yekê gotiye; 'Roman bi vê avê nayê nivîsandin; Lewre di têgihîştina lehengên romanê de Dîcle har e û ji ber vê yekê divê ez biçim Cizîrê. Diken got: "Lê wê demê Cizîr ne ewle bû û di çapemeniyê de navê Mehmed Uzun li gel navê Yaşar Kemal, Orhan Pamuk û Zülfü Livaneli bi gefan dihat nivîsandin û ji ber vê yekê ew jî hate taloqkirin. Piştî 8 mehan, Mehmed dîsa li min geriya û got: 'Teqez divê ez biçim Cizîrê.' Ez li nasekî geriyam û wî got; 'Rewş aramtir e, werin.' Em li qeymeqam geriyan. Me Mehmed wek akademîsyenekî ji Zanîngeha Stenbolê Beşa Ziman û Çanda Tirkî da nasîn, me xwe kamûfle kir û em çûn serlêdana qeymeqam. Qeymeqam em birin Birca Belek, em çûn heta jûra Mîr Celadet Bedirxan û zindana Mem. Dûre Ûzûn roman nivîsand."



**Romaneke nenivîsî: Meşa Mele Mistefa û Pêşmerge**

Dîken bi bîr xist ku Mehmet Ûzûn, demekê li ser vexwendina Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî çûye Başûr û ji Mesûd Barzanî re gotiye; "Ez dixwazim romana meşa dirêj û destanî ya Mele Mistefa Barzanî û Pêşmerge ya Sowyetê ya piştî rûxana Komara Mahabadê û 12 salên wî yên mişextiyê binivîsim" Dîken da zanîn ku Ûzûn pir gringî daye vê romanê, ji bo vê yekê xwe gihandiye 5-6 pêşmergeyên di meşê de cih girtine û bi wan re hevpeyvînên dûvedirêj kiriye. Diken got: "Lê belê piştî vegerînê êşiken nexweşiya wî destpê kirine û dûre li Swêdê aşkere bûye ku tûşî pençeşêrê bûye û ji ber vê yekê ev xebata wî encam nedaye."



**'Hezkirina gel temenê wî dirêj kir'**

Diken got ku bijîjkên Swêdê jê re gotine tenê heftiyek deh roj emrê te maye bes Mehmed, piştî ku hat Amedê bi hezkirin û mijûlbûna gelê kurd 15 meh jiya û beyî ku bangewaziyê bikin ji hezarî zêdetir kes hatibûn balafirgehê. Diken anî ziman ku Mihmed Uzun, di wan 15 mehan de şahidê gelek tiştan bûye ku hêjayî emrekê bûn û wisa domand: "Mehmed bû şahidê xwedîderketina gel ku ev yek bo wî gelekî girîng bû. bû şahidê xwedîderketina sazî û dezgehên kurdan. Bo nimûne li Qada Şêx Seîd, dîwana dengbêjan hatibû lidarxistin, ew jî ji paca Nexweşxaneya Veni Vidiyê vê dîwanê temaşe kir. Ev yek tiştekî bêhempa bû, her wiha nivîskarên kurd bi dorê pirtûkên wî îmze dikirin. Gelek mirov dihatin serdana wî û da ku jê re bibe şîfa, gelek tişt dianîn. Ev hezkirin jiyana wî dirêjtir kir

**Wesîyetnameya yekîtiyê**

Diken, qala wesiyetname û merasîma cenazeyê wî kir û got ku berê wî xwestiye li Siwwêreka bajarê xwe, li tenişta Necmettin Büyükkaya û Ferit Uzunê pismamê xwe bê veşartin lê piştre bi peşniyara Şehmus Dikenî, ev wesiyeta xwe guhertiye û bi vî awayî li amedê hatiye veşartin. Her wiha di wesiyetnama xwe de gotiye ku bila Ahmet Türk, Şerfettin Elçî û Yaşar Kemal, di rêûresma wî de biaxivin û Şivan Perwer û Ciwan Haco jî sitranan bêjin. Diken got ku wî bi zanebûnî ev kesayet hilbijartiye, lewre Ahmet Türk, di nav bizava Bakur de kesayetekî girîng e û wê çaxê Şerafettin Elçî jî bi BDP'yê re tifaq nekiribû, Yaşar Kemal jî bavê edebiyatê bû û ev yek peyama yekîtiya gelê kurd di xwe de dihewand.

**'Di xewn de bi lehengan re dipeyivim'**

Diken, anektodên balkêş derbarê nivîskariya wî de parve kir û got ku Uzun dizanibû ku bi zimanê taxê meriv nikare romanê binivîse, ji bo vê jî diket pey kîtekîtên zimanê kurdî, diket pey peyv û gotinan, bo nimûne digot ez ji Mûsa Anterî hînî kurdî bûme ku ev naye vê wateya ku berê kurdî nedizanî lewre Anter, hostayê îroniyê bû. Diken bale kişand ku Uzun xwe tenê wek nivîskarê kurdî nedida nasîn lewre ew bi sê zimanan, kurdî, tirkî û swêdî berhem dinivisand lê li ser kurdî îsrareke wî hebû. Diken got ku piriya ku Uzun girîngiyê dida kurdî, nedihişt romanên wî yên wekî Bîra Qederê, Siya Evînê, Ronî Mîna Evînê Tarî Mîna Mirinê salek du sal piştî çapa kurdî bo tirkî bên wergerandin, digel vê jî wî pir girîngî dida wergera pirtûkên xwe û digot wergerên berhemên min tama xwe ya edebî nade û ew xwe wek nivîskarekî bêsiûd dihesibsand, ji ber ku kes tune bû ku berhemên wî bi kurdî wergerîne îngilîzî. Diken da zanîn ku demekê çûye Stockholmê û Uzun ew li cihekî bi navê Gamla Stan gerandiye ku bi taxên xwe yên tenik pir dişibiya kuçeyên Amedê û wisa domand: "Uzun digot min li vir ji xwe re Amedeke xwe ya piçûk afirandiye. Li wir rûniştiye û romana 'Tu'yê nivîsandiye. Uzun di vê baweriyê de bû ku nivîskarî pîşeyekê ye û yên dixwazin bibin nivîskarekî baş divê hemû wextên xwe jê re veqetînin. Digot ez carinan di xewna xwe de bi lehengên xwe re şer dikim, bi wan re dipeyivim, nîvê şevê ji cihê xwe dipengizim û dinivîsim."



Bülent Gündüz :

# Binê keviran tije çîrok in

**Bülent Gündüz li cîhanê cihê sînemaya kurd nirxand û got ku sînemaya gelekî perçebûyî û li her perçeyan li ser sînemayê xebat tên kirin, hîn di qonaxa avakirina xwe de ye lê ev naye vê wateya ku sînemaya kurdî di nav sînemaya dinyayê de cîh nagire, sînemaya kurdî bi derketina Yilmaz Guney re destpê kiriye, bi xebatên takekesî ya Bahman Ghobadi, Hiner Saleem, Kazim Oz û gelek derhenêrên kurd re di nav dikên navnetewî de xwedî cihekî balkêş e**

**Mehmet Emin Kan**

Sînemaya kurdî di salên dawîn de, di qada navneteweyî de gelek deng da. Derhênerên kurd, bi filmên xwe tevlî mîhrîcanan dibin û gelek xelat werdigirin û xelat wergirtin, ji bo derhênerên nûjen dibe cihê feyzgirtinê. Bêguman yek ji van derhênerên jêhatî û şareza jî Bülent Gündüz e. Gündüz bi film û belgefilmên xwe li welatên wekî Amerika, Srîlanka, Jakarta, Îrlanda gellek xelatan wergirt û ji bo kurdan bû cihê serbilindiyê. Bulent Gunduz herî dawî jî bi filmê xwe yê 'Kurdistan Kurdistan' di Mîhrîcana Los Angelesê de şayani xelata 'baştirîn film' hate dîtin. Bi vê mebestê me çîroka çîroka jiyana wî û ya 'Kurdistan Kurdistan' jê pirsî û wî qal kir.

**Li pey şopa sînemayê**

Derhêner Bulent Gunduz'ê ku di sala 1984'an de tevî malbata xwe koçî Bursa'yê kirene, li vî bajarî bi tesadufî di radyoyekê de dest bi xebatê kiriye. û wê demê rola medyayê ya li ser civakê fêm kiriye û lêhûrbûna xwe li ser medyayê zêde kiriye. Gunduz dibêje : "Min dixwest ku ez wî karî bi profesyonelî berdewam bikim. Wê demê min reklamên dibistaneke sinemayê dît û dûre ez çûm Stenbolê da ku sînema bixwînim. Min serlêdana zanîngehê kir ; Lê belê ji ber ku ez tevlî programa bi navê 'Siyaset Meydanı' bûm û min li wê derê Yilmaz Guney parast, mamosteyê dibistanê Halil Refik bertek nîşan da û di mulakatê de ez nexistim beşê. Lê min li wê dibistanê di beşa rojnamegeriyê de berdewam kir. Piştî min dibistan qedand min demekî di televîzyonekê de peyamnêriya nûçeyên siyasî kir û rojnamegeriya min jî wisa dest pê kir." Bulent Gunduz, behsa pirtûka xwe ya bi navê ''Generallerin Mikrofonlu Erleri ve Kürtler'' jî kir û got ku di sala 2001'ê de çûye Parîsê û di nav demê de xwestiye ku li ser serpêhatî û nêrîn xwe yên ku di dema rojnamevanî kiriye ditine û di nav rojnamegeriya Tirkiyeyê de kurd bi çi awayî tên nîşandan binivîse û di sala 2007'an çap kiriye û wisa domand: ''Lê di dilê min de eşqa sînemayê hebû. Di sala 2010'an de me belgefilma ku qala Evdalê Zeynikê dike çêkir. Ev film Di festîvala filman a ''New York Internation İndependent'' û festivalê navnetewî de pênc diyarî stendin. Di sala 2013'an de min belgefilma bi nave ''Roboskî Mon Amour '' ku behsa rêwîtiyeke wijdanî ya ber bi Roboskiyê ve dike û jiyana yên ku nasên xwe li qirkirina Roboskiyê de winda kirine, bi çavê sînemayê tîne ziman amade kir."

**''Kurdistan Kurdistan''**

Bulent Gunduz derbarê filma xwe ya dawî 'Kurdistan Kurdistan' ku di Mîhrîcana Los Angelesê de xelata 'baştirîn film' wergirt de got ku ji her tiştî girîngtir ev e ku filmên mirov bigihîje gel, ango li welatê me derfeta weşandina film bê dayîn û bi vî awayî bi parvekirina hestên xwe ya bi gel re meriv pê kêfxweş bibe. Gündüz derbarê derketina fikra filma Kurdistan Kurdistan de da zanîn ku ev film behsa jiyana Dengbêj Delîl Dîlanar dike û ev film ji jiyana wî ya rasteqîn derketiye, Delîl Dîlanar û mamosteyê wî Dengbêj Egîdê Cimo piştî hesreta 20 salî ku Delîl li Almanyayê dijiya di vê filmê de hatin cem hev û vê filmê hesreta wan a rasteqîn anî ziman. Bülent Gündüz wisa domand : ''Delîl Dîlanar rojekê ji min re got ku rojekê ez ê herim welatê xwe, ez dixwazim tu jî bi min re werî û ew dem fikra vê filmê derket hole û min ji Delîl re got ez dixwazim filma wî çêkim. Delîl got dê kî bîlîze, min jî jê re got bila herkes rola xwe bîlîze û sînemaya rasteqîn jî wisa derket holê. Di vê filmê de Delîl hem bi malbata xwe re û hem jî bi mamosteyê xwe re li gundê Orginosa Muşê bihatana cem hev. Wê demê ez di nav wan de wek pirekê bûm û min jî cara pêşî wan bidîta. Delîl gelek caran mamosteyê xwe Egîdê Cimo di radyoya Erîvanê de gundar dikir, sedema ku ji malbateke dengbêj dihat û meraqa wî ji dengbêjiyê re hebû di sala 1996'an de Delîl bi Egîdê Cimo re li Erîvanê hate cem hev û du sal perwerdehiya balabanê ji Egîd sitend û piştre derket Avrupayê û piştî 20 salên ji hev qetiyayî cara pêşî bi wesîleya filma 'Kurdistan Kurdistan' wê bihatana cem hev''. Gündüz qala armanca vê filmê kir û got ku di vê filmê de xwestiye ku muzîkjenêkî li sirgûnê ji gelek alî ve kêm mayê û li gel wan li ser axa Kurdistanê hêstên xwe yên pak ku ji malbat û mamosteyê xwe stendiye xwestiye bişopîne, di her sehneyên vê filmê de baş têgihîştiye ku bi harmoniya mirov, sirûşt û muzîkê re jiyaneke aram çawa pêkan dibe.

Derhêner Bülent Gündüz anî zîman ku ev film bi gelemperî filmeke çandî ye û filma rîtuelên kurdî, dengbêjî, di dengbêjiyê de rola kasetan û hevdîtina Delîl Dîlanar bi mamosteyê wî Egîdê Cimo re û wisa domand : ''Piştre Delîl, li der dora sirra dengbêjiyê diçe û tê. Piştî 20 salên bi jiyana sirgûn û bi bêriya malbatê dagirtî, hunermendê ku vedigere welat ji nû ve bi rîtûelên kurdan cardin xwe dibîne. Li gel van tesîra herî mezin ku film li ser min hîşt, filma ku li sirgûnê dest pê dikê, her çiqas behsa rîtuelên kurd dike jî bi tespîta siyasî diqede.

**'Bandora belgefilman ji siyasetmedaran zêdetir e'**

Derhêner Bülent Gündüz di berdewamiya axaftina xwe da anî ziman ku, lêguncandinekê cidî ji wêjeya kurdî bo sînemayê nehatiye kirin,li Bakur sedema vî tiştî ev e ku derhêner bi piranî bala xwe didin trajediyên rojane û bi taybetî belgefilmên li ser qetlîamên dîroka nêz ya kurd, ji gelek siyasetmedaran zêdetir bandor derxistin holê. Gunduz ani ziman ku bi taybetî çanda serhildana dawî ya bakur dest pê kir, bandoreke mezin li sînemaya Bakur jî kiriye. lê heke mirov qala sînemayeke neteweyî bê kirin, divê mirov digel pirsgirêkên rojane û dîrokê jî bîne ber çav ; lewre ji bilî pratîka şerê 30 salan, dîroka wê ya hezar salan heye, mîtolojiya wê û deryaya wêjeyeke wê ya devkî heye.

**''Di bin hemû keviran de çîrok hene''**

Bülent Gündüz li cîhanê cihê sînemaya kurd nirxand û got ku sînemaya gelekî perçebûyî û li her perçeyan li ser sînemayê xebat tên kirin, hîn di qonaxa avakirina xwe de ye lê ev naye vê wateya ku sînemaya kurdî di nav sînemaya dinyayê de cîh nagire, sînemaya kurdî bi derketina Yilmaz Guney re destpê kiriye, bi xebatên takekesî ya Bahman Ghobadi, Hiner Saleem, Kazim Oz û gelek derhenêrên kurd re di nav dikên navnetewî de xwedî cihekî balkêş e, lê tevahiya pirsgirêkan ji ber bêstatubûna kurdan e û heke dewleteke me hebûya sînemaya me jî bi derfetênên baş xebat bikirana hê baştir dibû ku hêmanên ku piştgiriya sînemayê dikin ên wekî dibistan, rexnegir, firmayên belavkirinê, lîstikvan, nivîskar û sendîkayên heq û hûkûkê ku xebatkarên sînemayê diparêzin beyî statuyê çawa bên peydakirin. Gündüz got ku li gor sînemaya rojavayê sînemaya kurdî bisiûdtir e lewre mirov kîjan kevirî radixe di bin de çîrokek heye.







